## Hevkariya kurd û katalanan

Li Katalanya'yê ku beriya demeke nêz bo serxwebûnê referandûm jî ceribandibû, Qomîteya Piştgiriya Katalanya û Kurdistanê (Kurdiscat) hat avakirin û gelek Kurdistanî û Katalanî bi hev re li ser mijarên çawaniya piştgiriya bo Kurdistanê tevdigerin. R09




## Haşimê Apî Îsî

Ap Haşim, juyêde ne kilmek ne kî derg bî. Pirnikçewt bî. Hînî bi serê zonî mordemî de qese kerdêne. Çekûyî fek ra kêm vecîyêne. Juyî ke cira çiyê pers bikerdêne, ne "Ya!" ne kî "Ney!" vatêne. R07

# BasNûçe

HERDEM RASTÎ

Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL

Hejmar: 32 15-21 Kanûn 2014 basnews.com



## Beytocan

Piştî 23 salan dilê min bi agir hênik bû R16

# Li Rojava ber bi xweseriyê ve



## Şer, koçberî û penaberî

Hefteya Mafê Mirovan, li Amedê di bin serperêştiya Komeleya Mafê Mirovan a Şaxa Amedê, Baroya Amedê, Weqfa Mafê Mirovan a Tirkiye'yê, Komeleya Hiqûqnasên Mezopotamya'yê û Odeya Pijîşkên Amedê, bi hin çalakiyên cihê tê pîrozkirin. Rûpel 08



Xebatên Yekîtiya Netewî ku piştî êrîşen DAIŞ'ê yên li ser Şengal, Maxmûr, Kobanê û gelek warên kurdan hatibû rojevê berdewam e. Tê ragihandin ku egerên modela federal ya Başûrê Kurdistanê di pêşerojê de bo Rojava jî bibe mînak heye. Hewlên cîhbicîkirina biryarên ku di meha Cotmehê de di çarçoweya Peymana Duhokê de hatibûn girtin jî destpêkirin.

Hêzên kurd ên Rojava bo pêkanîna biryarên rêvebirî, hêza leşkerî û stratejiya hevpar civiyan û lijneyeke rêvebiriyê damezirandin. ENKS û TEV-DEM ku hêzên kurd ên Rojava di bin bana xwe de dihewînin li Qamişlo kom bûn û di civînê de bo Lijneya Rêvebiriyê 24 kes hilbijartin. Wê 6 kes jî wek nûnerên komen din beşdarî lijneyê bibin. Rûpel 02-03

## Riha

Riha di alema mîtolojiya pîroz de cîhekî girîng digre. Helbet ji efsaneyên Rihayê jî bêguman a herî girîng efsane ya Xelîl Îbrahîm û Nemrûd e. Xelîl Îbrahîm zirkurê Nemrûd e. Nemrûd mîrekî zalim û pûtperest e. Rûpel 10-11

Şoreşgerekî bênav

**Dr. Nûreddîn Zaza** R13

Mehmet Gültekin

**Feqiyê Teyran** R14


Rûpel 12

## Şaristaniya binê golê

# Alîkariya Kobanê erka netewî ye

Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di merasîma pêşwazîkirina Pêşmergeyên ku ji Kobanê vegeriyan de, li ser rewşa dawîn ya şerê DAIŞ'ê agahî dan. Barzanî got, şandina Pêşmerge ya li gel Kobanê bo wan berpirsiyarî û nîşaneya erka netewî ye. Barzanî hewcedariya yekgirtiya netewî û berxwedana hevpar anî ziman û eşkere kir ku wê alîkariya birayên xwe yên Kobanê bidomînin.

Barzanî di derbarê proseya referandûmê û serbixwebûna Kurdistanê de jî de jî got ku tu hêz nikarin rêya wan bigirin û ewê bi ti awayan paş de gav navêjin. Rûpel 04-05



# Li Rojava ber bi xweseriyê

Xebatên Yekîtiya Neteweyî ku piştî êrîşên DAIŞ'ê yên bajar û navçeyên Başûr û Rojavayê Kurdistan ên wek; Şengal, Mexmûr, Kobanê û yên din ketibû rojeva kurdan didomin.

Tê gotin ku di demên pêş de, wê federasyona Başûr li Rojava jî bê goncivandin. Her wiha nîşaneyên vê yekê xwe didine xuyakirin. Xebatên bicihanîna biryarên Peymana Duhokê yên ku di navbera ENKS û TEV-DEM'ê de hatibûn stendin destpêkirin.

Her du aliyên ku ji bo xalên wek; hêza leşkerî, rêveberiya hevpar û stratejiya hevpar ên ku di peymana Duhokê de hatibûn qebûlkirin niqaş bikin, hatin cem hev û Lijneya Rêveber destnîşan kirin.

ENKS û TEV-DEM'a ku du sîwanên sereke yên partî û rêxistinên Rojava ne, di civîna ku pêncşema çûyî li Qamişloyê pêk hat de 24 endamên Lijneya Rêveber destnîşan kirin. Tê payîn ku wê ji nûnerên kêmneteweyên ji herêmê jî 6 kes beşdarî vê lijneyê bibe.

Tê pêşbînkirin ku di demdirêjiya vê pêvajoyê de kantonên Cizîr, Kobanê û Efrînê bigihîjin hev û bibin yek. Ji alî din ve tê gotin ku ger rejîma heyî biguhere, federasyona ku kurd niha li serê dixebitin xweseriya xwe olan bike.

**Siyaset û rêvebiriya Rojava ber bi qonaxa yekgirtinê ve diçe. Piştî pesendbûna Peymana Dihokê gaveke nû hat avêtin. Hêzên kurd yên li Rojava, niqaşa xweseriyê dikin**





### Xelîl: Me dest bi pêkanîna Peymana Duhokê kir

Endamê Lijneya Rêveber a TEV-DEM'ê Aldar Xelîl, balê kêşa ser biryarên civîna Qamişlo ya ku berdewamiya civînên Duhokê ne û got: "Me dest bi pêkanîna biryarên Peymana Duhokê kir. Di civînan de rêxistinên kurd veguherînên siyaseta xwe pêk tînin" Xelîl 'nîqaşên xweseriyê' yên ku niha di rojeva rojavayiyan de ye jî nirxand û wiha dom kir: "Şêweya Rêveberiya Xweseriya Demokratîk cûda ye. Di vê pergalê de kurd, ereb, suryan, Aşûrî hene. Ev nayê maneya cihêbûn, perçebûn an jî damezirandina hikûmetê. Piştî em hilbijartinên xwe pêk bînin, emê li gor pêdiviyên xwe yên demdirêj tevbigerin. Bêguman ev bi rewşa ku niha Sûriye dijî re jî têkildar e. Emê hewl bidin ku em biryarên ku di Peymana Duhokê de hatine stendin pêk bînin"

'Daxwaziya me xwserbûna hemû herêman e'

Aldar Xelîl, gringiya civîna Qamişlo ya li ser guherîna siyasî û bi hev re xurtkirina yekitiya kurdan destnîşan kir û got: "Armanca me lihevnêzîkkirina kurdan û di her babetê de afirandina feraseta vineke yekîtiyê ye" Xelîl da zanîn ku ew ê hewl bidin ku ramaneke hevpar derxinin holê û wiha dom kir: "Helwesteke me ku em Sûriye û Rojava ji hev dûr bikin tune ye. Em dixwazin Sûriye ber bi demokrasiye ve biçe. Ne bi şêweyeke ku ji navendekî tê bi rêve birin, bi şêweyeke ku her herêm xwe bi rêxistin bike û li gor cûdahî û taybetiyên xwe, xwe bi rêve bibe. Divê her herêm xwedî sazûmaneke xweser be"

### Di rojeva me de beşdariya ENKS û êrîşên li dijî Kurdistanê heye

Di bersiva li ser pirsa di derbarê babetên ku ENKS û TEV-DEM'ê li hev kirine de Xelîl du babetên sereke yên civînê destnîşan kir û got: "Di rojên pêş de wê xalên ku li ser wan li hev kirine bêne ragihandtin. Lê belê niha du babetên gring hene. Em dixwazin ENKS'ê beşdarî rêveberiya heyî bikin û vê rêveberiyê frehtir bikin. Ji bo frehkirina rêveberiyan û hin guherînan dikarin pêşniyazan bikin. Babeta din jî, êrîşên li dij Rojavayê Kurdistan e. Em dixwazin herkes beşdarî parastina Rojava bibe. Li Rojava, divê kurd, ereb, suryanî û her kes erka xwe bi cih bîne û beşdarî parastinê bibe."

### Bi perçeyên din re pêwendiya konfederal

Xelîl, cûdahiyên di navbera Xweseriya Demokratîk û Pergala Kantonan jî nirxand û got: "Kanton, perçeyekî xweseriyê ne, şêweyeke xweseriyê ne. Em jê re dibêjin; Xweseriya Demokratîk" Li ser pirsa 'Ger ku Kurdistana Xweser bê damezirandin, wê Pergala Kantonan bi dawî bibe?' Xelîl bersiva, "Kanton, erdnîgariya ku xwserî li ser wê tê damezirandin e" da me.

Di bersiva pirsa me ya 'Di dema asan de, wê pêwendiyên pergala Xweseriya Demokratîk û Sûriye çawa bimeşe?' de jî Xelîl got: "Dema ku Sûriye demokratîk bibe, rejîm biguhere û rejîm û hikûmeteke ku bi hêmanên demokrasiyê hatiye honandin damezire, eme bi xweseriya xwe ya demokratîk di nav pergala nû ya Sûriye de cihê xwe bigirin. Kîngê Sûriye bibe xwedî sazûmaneke federatîf, wê demê emê jî pêwendiyên xwe gurr bikin. Her federasyon bi navendê re çawa pêwendîdar be, emê jî wisa pêwendîdar bin"

Aldar Xelîl, di derbarê pêwendiyên ku ewê bi Başûr û perçeyên din ên Kurdistanê bigirin jî wiha axivî: "Dema ku perçeyên din ên Kurdistan bibin xwedî statu û pergalekî wê pêwendiyên me yên bi wan re jî bi şêweyeke konfederal pêk bê. Di demdirêjiyê de wê bi perçeyên din ên Kurdistan re pêwendiyên me yên xurtir bigeşin"

### Divê tafilê Kongreya Neteweyî pêk bê

Aldar Xelîl, bandora Xweseriya Demokratîk a li ser berdewamiya hêza hevpar a ku piştî êrîşa DAIŞ'ê, bi beşariya hêzên HPG, YPG û YPJ'ê li Başûr û bi beşdariya Pêşmerge li Kobanê pêk hat destnîşan kir û wiha dom kir: "Di rastiya xwe de ev proje, projeya Kongreya Neteweyî ya Kurd e. Wê demê, ji bo ku kurd hêzeke hevpar saz bikin, bi mebesta em pêşkêşî kongreyê bikin me daneżanekê amade kiribû. Lê belê kongre pêk nehat. Dûre ev êrîş pêk hatin û pêvajoyeke dijwar destpê kir. YPG çû Başûr û Pêşmerge hate Rojava. Lê belê divê kongre pêk bê û di kongreyê de pergaleke nû bê damezirandin"

Di berdewamiya axaftina xwe ya di derbarê Kongreya Neteweyî ku niqaşên le ser wê dom dikin de Aldar Xelîl, grîngî û pêwîstiya pêkhatina wê destnîşan kir û wiha pê ve çû: "Divê kurd, di kongreyê de bigihijin biryardayînekê. Divê em di kongreyê de biryara stratejî û plansaziyeke hevpar bidin. Ev tişt bêyî kongreyê pêk nayên. Yekîtiya ku îro di vê rewşa awarte de pêk tê têrî me nake. Tenê biryardayîna di derbarê parastina hevpar jî çareserî nîne. Divê ne tenê di demên xeter de em bêne cem hev. Di destê me de fersendeke dîrokî heye û divê em vê fersendê tek nebin"

### Wê komîte bi hev re tevbigerin

Endamê Sekreteriya Giştî ya ENKS'ê Ehmed Silêman jî i derbarê vê babetê de pirsên BasNûçe'yê bersivand. Silêman da zanîn ku civînên Duhokê, ji bo çareserkirina arîşeyên navbera her du aliyan pêk hatiye û got: "Wê arîşe bêne çareserkirin"

Li ser grîngiya civînên Qamişloyê jî Ehmed Silêman anî ziman ku di van civînan de ew li ser pergala ku wê li Rojava bê sazkirin niqaşan kirine û da zanîn ku di derbarê parastin û asayîşê û rêveberiyên herêman wan gavên erênî avêtine. Silêman, li Sûriyeyê, tunebûna projeyeke çareserkirina pirsgirêka kurd destnîşan kir û wiha dom kir: "Her du alî, li ser xwegoncivandina peymanê û pêkanîna guherîna xwe ya siyasî, komîteyên hevpar ên leşkerî û rêveberî ava dikin"



Aldar Xelîl



Ehmed Silêman



Hekîm Xalo

### Emê li gor peymanê tevbigerin

Ehmed Silêman anî ziman ku ew li ser xweseriya Rojava li Duhokê li hev hatine û got: "Ger em li gor xalên ku em li ser wan li hev hatine tevbigerin, li gor derfetên xwe emê hilbijartinan pêk bînin. Hêvîdarim ku hilbijartin tafilê pêk bên û gelê Rojava nûnerên xwe hilbijêre" Silêman, diyar kir ku bi asanbûna rewşa Kobanê re, wê biryarên Peymana Duhokê bi cih bên û dom kir: "Em naxwazin bicihanîna biryarên Peymana Duhokê bi rewşa Kobanê re girê bidin, lê belê ger ku li Cizî û Efrînê derfet hebin emê hem parastina van herêman bikin û hem jî li van herêman hilbijartinan pêk bînin. Emê li gor xalên peymanê tevbigerin û emê van projeyên ku di Peymana Duhokê de biryara wan hatiye stendin pêk bînin"

Li ser pirsa 'Demeke dirêj bi ser peymanê ve çû, gelo pêkanîna peymanê çima ev çend dereng bû?' jî Silêman wiha bersiv da: "Di nav me de, hin partiyan nûnerên xwe dereng destnîşan kirin. Lê belê em hêvî dikin piştî hilbijartinên 16'ê mehê xebat bi leztir bimeşin û di demeke kurt de pirsgirêk çareser bibin. Piştî ku 6 nûnerên din jî beşdarî Lijneya Rêvebir bibin wê komîteyên rêveberî û leşkerî bêne damezirandin"

### Em hêvî dikin ku jin jî beşdar bibin

Silêman, li ser pirsa 'Çima di lijneya ku ji 24 nûneran pêk tê de jin tune ne?' jî ev bersiv da me; "Di nav nûnerên TEV-DEM'ê de jin hebûn, lê belê di nav ENKS'ê de tune bûn. Ev rewş cihê rexneyê ye. Em hêvîdar in ku di demên pêş de jin jî beşdarî di rêveberiyê de cih bigirin. Ez bawer dikim ku di hilbijartinan de wê di nav nûnerên ku wê gelê me ew hilbijêrin de jin jî hebin"

### Li kantonan armanc yekîtiya kurdan e

Silêman, bi bîr xist ku pergala heyî ya Rojava, di civînên Duhokê de hatine niqaşkirin û got: "Çareseriya pirsgirêka kurd bi demokratîkbûyîna Sûriyeyê ve girêdayî ye. Heta ku rewşa Sûriyeyê wiha be ev yek pêk nayê. Gelo ev pirsgirêk wê bi yekîtiya siyasî çareser bibe yan wê bi perçebûna Sûriyeyê çareser bibe? Ji niha ve mirov nikare tiştekî bêje. Ji ber vê yekê me biryar stend ku em di nav kurdên van kantonan de yekîtiya siyasî û rêvebirî pêk bînin. Pergala kantonan bi xweseriyê betal nabe. A grîng ew e ku li Sûriyeyê kurd, li ser axa xwe, xwe bi rêve bibin û xweser bijîn"

### Emê fersendan ji dest bernedin

Di derbarê yekgirtîbûna Başûrê Kurdistan û xweseriya demokratîk a ku wê li Rojava bê damezirandin jî Silêman got: "Her kurd vê yekê dixwaze, lê belê ev tenê di destê kurdan de nîne. Ev rewş bi hevsengiya hêzên herêmê re têkildar e. Emê hewl bidin ku fersendên derketine holê ji bo berjewendiyên xwe bi kar bînin"

### Daxwaza me Sûriyeyeke federal e

Ehmed Silêman anî ziman ku piştî pêkhatina vê modêlê, wê pêwendiyên wan bi dewleta Sûriye re di pergaleke federal de bê sazkirin û got: "Li ser vê yekê me îttifaq dageşand. Ev federalbûyîna pergala dewleta Sûriye û bi mafê xwe û bi projeya xwe, xwe bi rê ve birina kurdan e"

Rêvebirê ENKS'ê Ehmed Silêman, anî ziman ku ew bawer e yekîtî û parastina hevpar a ku li Kobanê pêk hatiye dom bike û wiha dawî li axaftina xwe hanî: "Ev parastina hevpar, di encama êrîşa li dij hemû kurdan pêk hat e û wê berdewam bike. Heta xeterî ji holê ranebe wê Pêşmerge ji Kobanê venekişe"



Hevserokê Meclîsa Yasahênan a Kantona Cizîrê Hekîm Xalo jî di derbarê rewşa dawî ya Kobanê de ji rojnameya me re agihiyan dagihand. Xalo got: "DAIŞ, li Kobanê şkestineke mezin dîjî û dest bi paşvekêşînê kirî ye. Hêzên Pêşmerge, YPG û Volkana Firatê zor dane DAIŞ'ê û DAIŞ, ji bêçarî paşve dikişe. Ji tax û kuçeyan vedikişe. Êdî rewş guherî, em ber bi serkeftine ve diçin. Di demeke nêz de wê Kobanê bê rizgarkirin" Xalo da zanîn ku ji % 80'ê Kobanê ketiye destê hêzên kurd û got: "Şer bê navber didome û DAIŞ direve. Hêza wê ku dikaribe li hember hêzên Pêşmerge, YPG û YPJ'ê bisekine nema ye"

### Pêşmerge moraleke mezin dide

Xalo, grîngiya piştgiriya Pêşmerge ya tekoşîna li Kobanê ya li dij DAIŞ'ê tê dayin destnîşan kir û dom kir: "Pêşmerge, hem wek hêzeke fermî û hem jî wek sembol xwedî grîngiyekê ye. Ji bo me pir grîng e û moraleke mezin dide me û hêzên me. Yekîtiya gelê kurd saz dike. Çekên wî yên giran hene û ev pir bi kêrî me tê. Em dubare dibêjin, her çiqas wek hejmar kêm bin jî, moraleke mezin didin hêzên me û yekîtiya kurdan saz dikin. Êdî Hewlêr, Kobanê û Qamişlo yek in. Bi hatina xwe, di qada navneteweyî de rengekî fermî dane Kobanê. Ev fermîbûn serkeftina me ye û ji bo dîplomasiya navneteweyî pir grîng e"

### Yekîtiya hêzên leşkerî bingeha yekîtiya netewî ye

Xalo, hatina Pêşmerge ya Kobanê ji bo sazbûna hêza neteweyî ya hevpar gring nirxand û wiha dom kir: "Ger em karibin, dûre emê di nav kurdan de Kongreya Neteweyî û yekîtiya hêza neteweyî saz bikin. Emê li çar perçeyên Kurdistanê, hemû kurdan ji înkar, komkujî û zilmê biparêzin. Ev, wê bibe gaveke mezin û dîrokî. Ne tenê li Kobanê, li Şengal, Celewla, Mexmûr û hemû cihên ku kurd lê dijîn, wê Pêşmerge, HPG, YPG û YPJ, tev bi hev re Kurdistanê biparêzin û wê xwîna wan tevlî hev bibe. Di siberojê de, wê ev rewş, bibe hîmê yekîtiya kurd û ji bo kombûna Kongreya neteweyî we roleke mezin bileyze"

### Divê hevpeyman bi hêztir bombebaran bike

Xalo, di derbarê operasyonên hewayî yên hêzên hevpeyman de jî da zanîn ku li Kobanê, li dij baregehên DAIŞ'ê bombebarana hêzên hevpeyman dom dike û ji bo DAIŞ bêtaqet bê hiştin xwest ku ev bombebaran berztir bibin û bê navber dom bikin.

### Em li benda serkeftine ne

Xalo, da zanîn ku Hikûmeta Kantona Kobanê civîneke berfireh pêk anî ye û di derbarê rizgarkirina Kobanê de anî ziman ku ew li benda ragihandina serkeftinê ne û got: "Em hêvî dikin ku di nav mehekê de Kobanê serkeftina xwe ragihîne û azad bibe" Xalo, li ser rewşa kantonên Cizîr û Efrînê jî diyar kir ku li Cizîr û Efrînê rewş aram e, lê belê carcaran li aliyê rojavayê kantonan, li Serêkaniyê, di navbera hêzên kurd û DAIŞ'ê de hin pevçûn diqewimin. Xalo da zanîn ku ev herêm di bin konrola hêzên YPG û YPJ'ê de ye.

### PYD'ê ji Ewropa xelat wergirtye

Ji alî din ve li Parlemana Ewropa, '11. Konferansa navneteweyî ya Yekîtiya Ewropa-Tirkiye-Rojhilata Navîn û Kurd' hate lidarxistin. Di konferansê de Weqfa Rizgarkirina Zarokan xelatekê da Salih Muslim.

Di konferansê de Serokê Weqfa Rizgarkirina Zarokan Mahir Kılıç, bi boneya ku hêzên YPG'ê, di meha Tebaxê de malbat û zarokên ku di ji ber DAIŞ'ê, li çiyayê Şengalê asê mabûn rizgar kiribûn plaketeke spasiyê pêşkêşî Serokê PYD'ê Salih Muslîm kir.

Mesûd Barzanî:

# Alîkariya Kobanê erka me ya netewî ye

**Serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî di bernameya ku ji bo pêşwazîkirina Pêşmergeyên ku ji Kobanê vegeriyan pêkhat de peyamên girîng dan. Barzanî da zanîn ku Kurdistan dê li gor proseya referandûmê tevbigere û ji wê paş de venakişe**



Nîqaşên li ser meseleya serbixwebûna Kurdistanê yên ji ber gurbûna şer û giftûgoyên di navbera Bexdê de kêm bûbûn, dîsa tên rojevê. Di meheke dawî ya di çerçoveya peywendiyên dîplomatîk, di navbera Bexde û Hewlêrê de gellek lihevkirin heye. Vê yekê baweriyek bi xwe re anî bû ku dê meseleya serbixwebûnê ji bo demekê bê taloq kirin. Têkşikandina êrîşên DAIŞ'ê, peywendiyên baş ên bi dewletên dinyayê re, bûne hokar ku meseleya referandûmê û serbixwebûnê dîsa bê rojevê.

Serokê Herêma Kurdistanê Mesud Barzanî, bi boneya cih guherîna pêşmergeyan, di vegera pêşmergeyên di 31ê Cotmehê de çûbûn Kobanî de, daxuyaniyek belav kir: "Li gor derfetan em amadene arîkariya birayên xwe yên li Kobanêyê bikin, ev yek erka me ya netewî ye." Barzanî, ragihand ku yek ji mebesta DAIŞ'ê jî têkbirin û ji holê rakirina proseya serxwebûna Kurdistanê ye. Barzanî wiha domand: "DAIŞ nikare daxwazên me, proseya referandûm û serbixwebûnê sabote bike."

Yekîneyên Pêşmergeyan yên li Şengalê, li Cezaa û Rabîayê DAIŞ feşkilandin di 31ê Cotmehê de çûn Kobanê û digel YPG li eniyan şer kirin. Yekîneya pêşmerge ya ku nêzîkî meh û nîvekê li Kobanêyê bûn, hefta rabirdû dora xwe bi yekîneyên din ê pêşmerga re guherîn û vegeriyan Hewlêrê. Serokê Herêma Kurdistanê Mesud Barzanî, Wezîrê Pêşmerge Mistefa Seyid Qadir, Arîkarê Wezîrê Pêşmerge Enwer Hacî Osman û ji Wezareta Pêşmergeyan gellek rêvebir bi rêwresmeke taybet pêşwaziya pêşmergeyan kirin.

Barzanî, ragihand ku pêşmergeyan merxasiyeke mezin nîşandane û berxwedana wan gellekî muhim e. Barzanî di derbarê berxwedana peşmergeyande wisa derbirî: "We ji bo malbata xwe ji bp welatê xwe mînakeke mêxasiyê nîşan da. Îhtiyaciya birayên we yên li perçeyên din ê Kurdistanê bûn bi we hebû. We ev bar girt ser milê xwe. Hûn nûnerên Kurdistanê ne. Bi çûyina we hêviyên dijmin têk çûn. Û li Kobanêyê serketinêk mezin pêk te."



### Serkeftina pêşmergeyan serkeftina gelê kurd e

Barzanî ragihand ku, DAIŞ'ê bawer dikir ku dê gelê kurd li ber xwe nedin û dê dev ji parastina Kurdistanê berdin. Û lê nedifikrin ku dê hêzên navdewletî arîkariya Kurdistanê bikin loma jî êrîşî Kurdistanê kirin. Barzanî, wisa berdewam kir: "Pêşmerge hemû hêvi vala derxistin û bi mêrxasî şer kir û gelê kurd pê şanaz kir. Pêşmerge dê terorîstan ji nav bibe. Divê di tu mercan de vîna gelê me têk neçe. Vîna gelê kurd pêşmerge ye û serketina pêşmerge jî serketina gelê kurd e. Ev berxwedana mezin şerefek e, ev yek jî bi destên pêşmergeyan tê nivîsîn."

### Alîkariya Kobanê erka me ya netewî ye

Barzanî li se rewşa dawî ya Kobanî jî rawestiya û hewcedariya yekgirtiya netewî û berxwedana hevpar anî ziman. Barzanî, eşkere kir ku dê li gor derfetên xwe arîkariya birayên xwe yên Li Kobanêyê bikin û vê yekê jî weke erka xwe ya neteweyî dibînin.

Barzanî di derbarê proseya serbixwebûna Kurdistanê û referandûmê jî de axivî û amaje bi wê yekê kir ku dê di di derbarê biryarên xwe yên li ser serbixwebûn û refarandûmê jî de tu gavan bi şûnde navêjin. Barzanî axafina xwe wisa berdewam kir: "Hezar DAIŞ jî bên dê proseya serbixwebûn û referandûma herêma Kurdistanê berdewam bike. Du armancên DAIŞ'ê hebûn di êrîşn li ser Kurdistanê de; ya yekem ew bû ku proseya referandûm û serxbixwebûnê gihiştibû asteke gellekî baş. Xwestin vê proseyê ji nav bibin. Lê belê ne sed DAIŞ hezar DAIŞ jî bê dê proseya serbixwebûn û referandûma Herêma Kurdistanê berdewam bike. Di vê meseleyê de em ê bi paşde gavê neavêjin.Ya duyem jî ewe ku Sunnî beyî lêbifikirin DAIŞ hebandine û piştgiriya wê kirine. Ev yek jî ew kêşe ye. Kêşeya cihên kurdnişînan ên ne dibin rêveberiya herêma kurdan de ye. Yanî li gor Makezagona Iraqê cihên di xala 140î de cih digrin. Li gor wan dê DAIŞ'ê ev hemû herêm destserbikira û dê kêşa jî çareser biba. Lê belê hesabên wan li hev derneket. Lewre nedizanîn ku dê Amerîka û dewletên Yekîtîya Ewrûpa bi lez arîkariya me bikin. Hêviyên wan tunebûn ku dê pêşmerge wisa parastin û berxwedanê bike, ji ber vê yekê poşîman bûne."

### Vîna gelê kurd têk naçe

Barzanî diyar kir ku pêşmerge ji Kobanêyê heta Celewlayê li sînorekî hezar û pêncî metreyî li hember DAIŞ'ê şer dike û dê nehêlin bi tu awayî vîna gelê kurd têk biçe. Barzanî axaftina xwe wisa domand: " Raste di destpêkê de em bi reweşeke nebaş re rû bi rû man.Birayên min ev yek şer e. Di şer de hûn dê hindê caran bi ser bikevin û hindê caran jî têk biçin. Hindê caran hûnê dijmin bifeşkilînin û hindê caran jî hûn ê ji neçarî bibezin. Lê belê tiştê muhîm ewe ku vîna we têk neçe. Vîna gelê Kurdistanê têk naçe. Pêşmerge bi berxwedana xwe deng li cihanê veda. Yekîneyên Herêma Kurdistanê, artêşa wan a bi navê 'Leşkerên Xelîfeyî' ya ji çekdarên bîyanî pêk tê ji nav bir."

### DAIŞ bi ser El-Kaide'yê ve ye

Barzanî eşkere kir ku DAIŞ bi ser El- Kaideyê ve ye û piştî mirina Bin Ladin, komek ji El- Kaideyê veqetiya ye û wan ew ava kiriye. Barzanî diyar kir ku tu cûdahiya bîr û mebestî di navbera DAIŞ û El –Kaideyê de tuneye. Barzanî axaftina xwe wisa berdewam domand:" Sala par li Iraqê rayeke DAIŞ'ê hebû û berbi rojavayê Musulê vê hatin. Xwestin li wê derê 3-4 yekîneyan ava bikin. Wê demê bi riya Ammar el-Hekim û Dr. Roj Nuri Şavesê Balyozgerê Amerîkayê yê Bexdê min ji Serokvezîrê Iraqê Nurî el- Malîkî re peyam şand. Piştre min jî jê re telefon vekir. Min jê re ragihand ku planên gellekî xetrenak ê vê rêxistin li ser herêmê hene û min got: ' Werin em bi hevre berevaniya vê yekê bikin, beriya ku rêxistin qewî bibe em çareyekê bibînin.' Lê Malîkî beriya ku li min guhdar bike got: 'Bila haya te ji Kurdistanê hebe û vê derê meraq neke, hemû tişt di bin kontrola me deye'"

Barzanî di derbarê dagirkirina Musulê jî de wisa axivî: "Çekdarên DAIŞ'ê nikarîbûn li desteserkirina Musulê bifikirin. DAIŞ ji bo azadkirina hevalên xwe hatibû hevalên wan di Girtîgeha Baduşê dene. Ev der 15 kîlometre dûrî Musulê yê. Li Musulê du fermandarên Malîkî yên bi navên Ali Gaydan û Abud Gamber hebûn. Bi raya wî dê ev herdû fermandar ji bo wî hemû derê desteser bikin. Lê kêliya çend topên hawênan li nêzika van fermandaran ketin ew fermandar li wesayîtên xwe siwar bûn û reviyan. Kêliya ew reviyan leşker jî reviyan û tevlihevî pêk hat. Gelê Musulê ji xwe ji rewşê acizbûbûn. Ji Musulê heta Tikrîtê bû weke serhildaneke Sunniyan. Artêşe ku Malîkî ava kir- ez jê re nabêjim artêşa Iraqê. Ji ber ku ew artêşa Malikî bû- Artêşa Hikûmeta Iraqê, Amerîka û NATO deh salan ew perwerde kiribûn di navbera 2 saetan de weke berfê heliyan. Ji xwe parastin nekirin. Kêliya DAIŞ hat wira 2 hezar kes tunebûn. Kêliya çekdarên rêxistinê rewşa xirab dîtîn pêk ve jî bajar desteser kirin. Kêliya ev yek pêk hat weke partiyên siyasî yên Kurdisatnê em civiyan û me biryar stend ku em sînorên xwe biparêzin. Me got: 'Heta DAIŞ êrîşî me neke em jî êrîşî ser wê nakin.' Lewre Maliki ne ew zilam bû mirov pê re hevkariyê bike û bi wî re tevbigere."

### Doza me dozeke mafdar e

Mesud Barzanî da zanîn ku ji ber êrîşên DAIŞ'ê zirar û berzeyiyên wan gellekî zêde ne. Barzanî, li ser piştevaniya navdewletî jî rawestiya û wisa da tomarkirin: "Digel hemû tiştî jî hemû cihanê, doza me nas kir. Giranî û maqama Herêma Kurdistanê jî astekê gihiştiye asteekê. Rêber, serokwezîr û serokkomarên hemû cihanê,ragihandin ku pêşmerge ji bo mirovahiyê şer dike. Doza me dozeke heqadrî ye. Gelê me jî heqdarbûna xwe ji hemû cihanê re eşkere kiriye. Ji ber vê yekê hemû cihan bi arîkariya me ve hat."

### Almanya 100 pisporên leşkerî dişîne Hewlêrê

Mijara şandina leşkeran a bo Kurdistanê bûbû sedema gengeşiyan li Almaya yê. Di vê çerçoveyê de pêngavek nû pêk hat. Li Herêma Kurdistanê amadekariyên avakirina kampeke perwerdehiye berdewam dike. Almanya eşkere bi wê yekê kir ku dê bo perwerdekirina hêzên pêşmerge 100 pisporên leşkerî bişîne herêmê.

### Peyewendiyên dîplomatîk berdewam dikin

Di warên leşkerî û siaysî de ev pêngav bi rêve diçin, peywendiyên dîplomatîk jî berdewam dikin.Barzanî di nava hefteyê de bi Balyozgerê Misirê re û bi Fermandarê Yekîneyên Navendî yê Amerîkaya re civiya. Barzanî, bo arîkariyan spasdariya herdu mêvanên xwe kir û da zanîn ku ew ji daxwazên wan ê havkariyê jî re amadeye. Barzanî, ewil Uset Fehmiyê Balyozgerê Hewlêrê yê nû ji hêla Misirê ve hatiye tayînkirin ezimand. Barzanî di derbarê eniyên şer de rewşa Kurdistanê de hinek agahî da û eşkere kir ku divê hemû kes li hember DAIŞ'ê bi hevre hevkariyê bike. Fehmi jî eşkere kir ku ew berxwedana gelê kurd û hêzên kurd a li hember DAIŞ'ê heja dinirxînin û ew amadene arîkariya wan bikin.

Hevdîtîneke Barzanî ya giring civîna bi Fermandar Lloyd Austinê Fermandarê Yekîneyên Navendî yê Amerîkaya re bû. Barzanî, spasdariya Austin û welatê wî kir ku arîkarî û eleqeyeyê didin Kurdistanê. Barzanî da zanîn ku ew dê di her mercî de li hember terorê şer bikin û di vî şerî de dê arikariya cihanî jî rolê bilîze. Austin jî ragihand ku ew şerê pêşmerge û gelê kurd ê li hember DAIŞ'ê gellekî hêja dinirxînin û ew dê di arîkariyê de berdewam bin.





## Barzanî di lîsteya TİME de

Şexsiyetên salê yen ku ji hêla Govara TİME ve tê eşkere kirin de diyar bû. Di lîsteya 'şexsiyetên salê' ya îsal de bijîşk û hemşîreyên li hember nexweşiya Ebolayê berxwedanê dikin weke şexsiyetên salê hatin eşkerekirin. Serokê Herêma Kurdistanê Mesud Barzanî jî di lîsteyê de cih girt.

Serokê Herêma Kurdistanê Mesud Barzanî jî di rêza 5. cih girt. Bi rêzê di lîsteya Time de van navan cihê xwe girtin: 'Şerkarên Ebolayê, Protestokarên Ferguson, Serokê Rusya Vladimir Putin, Teşebûskarê Çînî Jack Ma û Mesud Barzanî'

Barzanî jî didaxuyaniya xwe ya têkildarî mijarê de diyarkir ku bo wî 'Şexsiyetên salê' Peşmerge ne ku li dijî DAİŞ' şer dikin.

## Rexne li lîjneya referandûmê

Digel şerê bi DAIŞ'ê re helwesta Herêma Hikûmeta Kurdistanê ya li hember hemû qewm û hêlan ayînî, ji hêla hemû raya cihanê hêjayî tê hesibandin. Mesud Barzanî, bo hilnebijartina Mesihî û Tirkmenan a bo Lîjneya Hilbijartin û Referandûma Kurdistanê bertek nîşanda. Mesud Barzanî li nişîngeha xwe ya li bajarê Selahadin, bi endamên Parlementoya Kurdistanê bi nûnerên Tirkmen, Kildanî, Asurî-Sûryanî û Ermeni re civiya. Barzanî, da zanîn ku hemû kom, perçeyên Kurdistanê ne û cihnegirtina hin koman bo lîjneyê li helwesta Kurdistanê ya ku dinya wê qebûl kiriye nayê. Barzanî eşkere kir ku divê nûnerên hemû kom û ayinan di lîjneyê de cihê xwe bigrin û ragihand ku ew dê bo vê yekê j, çi ji destê wî bê bike.

## 727 Pêşmerge bûn qurbanî

Wezareta Peşmerge encamên 4 mehên şerê bi DAIŞ'ê re eşkere kir. Di daxûyaniyê de hat ragihandin ku li hember êrîşên DAIŞ'ê yên li ser Kurdistanê de berxwedaneke mezin tê dayîn. Di berdewamiya daxuyanîyê de tê eşkerekirin ku serketin bibedêlan tên bidestxistin.

Wezareta Pêşmege, eşkere dike ku pêşmerge, polîs, parezvan, zerevanî, pêşmergeyên malnişîn û dildar, bi tevahî 727 ewlekaran jiyana xwe ji dest daye û 3ê hezar û 564 kes jî birîndar bûne. Di daxuyaniyê de amajê pê tê kirin ku aqûbeta 34 pêşmergeyan jî nayê zanîn.

## Civîna 3 qolî dijî DAIŞ'ê

Di berdewamiya şerê hêzên kurd ên li hember DAIŞ'ê de Pentagon, Wezereta Pêşmerge û Wezareta Berevaniya Iraqê li hev civiyan. Li gor daxuyaniya fermî ya Wezaretê Pêşmerge, bi pêşengiya rayedarên leşkerî yên Amerîkayê, Wezareta Pêşmerge û Wezareta Berevaniya Iraqê bo xetereya DAIŞ'ê ya li ser herême û bo plan û operasyonên leşkerî sê alî civiyane. Tê gotin ku her sê alî, di heman fikrêdene ku civinên berevaniyê bêhtir pêk bînin. Di daxuyaniyê de tê eşkere kirin ku dê li hember DAIŞ'ê berxwedaneke bi tesîr bê meşandin û hin tedbîrên din jî dê bêne stendin.




Foto: Aydın Batur

# Awê Miradî

Dergîya Çimeyî Miradî ra hetanî Ferat nizdîyê 700 km yê. Ferat û Dîcle pîya bi hezaran km şinî, Mezopotamya de xo dima hêga û arazîyan bereketînan verdenî

**Aydın Batur**

Senî ke gonî bedenê însanî ra gêrena û gan dana însanî, awe zî rîyê erdî ra şina û gan dana erdî. Awe gan dana herre, heyat dana û bereket ana. Kamca ra awe ravîyero uca heyat peyda beno û arazîyê xo beno bereketîn. Însanî nê arazîyê bereketînan ramenî, bezre erzenî herre û dîyarîyê emegê xo pawenî.

Sey heme awan, Awê Miradî zî gan dana heyatî. Çimeyî Awê Miradî vakurê Behrê Wanî ra, nîzdîyê Agirî ra dest pêkenî. Uca ra dest pêkenî labelê xeylê dere û çemî şinî rişyenî ci. Awê Miradî nê çem û dereyan ra qewet gêna û bena zêd. Agirî ra dima yena Deştê Mûşî ra yena rasena Çewlîg û koyanê Çewlîgî vînena. Sey yew layî tadîyena û lêfyena Deştê Çewlîgî ra û verard şina Çewlîg ra. Binê Pirdê Darê Hênî û Pirdê Palî yê henzar serran ra ravîyerena. Xarpêt de Awê Munzurî û Awê Perî rişyenî ci. Dima nizdîyê Meletî de Awê Çemê Reşî resena cı û nê awî benî yew; nameyî înan beno Ferat.

Dergîya Çimeyî Miradî ra hetanî Ferat nizdîyê 700 km yê. Ferat û Dîcle pîya bi hezaran km şinî, Mezopotamya de xo dima hêga û arazîyan bereketînan verdenî. Dima şinî Kendawê Basra ra rişyenî derya.

Awê Miradî kamca ra ravîyerena heyat dana û bereket ana uca. Awa zelal a, pak a labelê gege zî bîya sur û gonî kirişta berda û bîya şahîdê xeylê decan û derdan zî. Xeylê terteleyî dîyî û kul û qehrî nê terteleyan zî kiriştê û xo ya pa berdê çolanê ereban de kerdê vîn. Nê zulmî ra xeberê kesî nêbîya û qêrrayîşê şarî ê cayan de nêşîyo kesî.

Dewê Şaîr Mehmet Mehdî Ozsoyî zî mintiqayê Govdere de kiştê Awê Miradî de bî. Mehmet Mehdî Ozsoy no kirişnayîşê decan û derdan şîîrê xo Mem û Zîn de wina vano:

Dêrd-belê mi ser zaf ûmê pyêser  
Mi kerd-nîkerd anîgêrê dêc pêyser  
Ez bîyu sê pêl, dêrd û dêc bî laser  
(...)  
Dêrd gird bî, Dîcle ez şaw' xwu ver  
Celxûn wisar ez rasnaw Cizîr ver  
Çi heyf ke wextêk zaliman zulm

kerdo dormaleyê şarê Awê Miradî û nika zî nê însanê çimveyşanî zerar danê Awê Miradî.

No rid ra nê serranê peyînan de serê Muradî de xeylê înşatê awbendan virazîyayî û zincîrî erzîyayî vernîyê Awê Miradî.

Waştenê ma na wa ke şarê dormaleyê Awê Miradî nê ra tepîya decan û derdan nêvîno, çimveyşan û çimtengîya nê însanan biqedîyo û Awê Miradî azad bo.

# Şaxê Dîyarbekirî yê Weqfa Îsmaîl Beşîkçî abî



Şaxê Dîyarbekirî yê Weqfa Îsmaîl Beşîkçî de xebata xo dewam kena

Weqfa Îsmaîl Beşîkçî ke 2012 de Îstanbul'de abibî, şaxê xo yê verên li Dîyarbekir de akerd.

Şaxê Dîyarbekirî yê Weqfa Îsmaîl Beşîkçî de xebatê kirdkî benê. Xebata yewine Grûba Wendişî ya Kirdkî ya ke heskordox û wendoxanê edebîyatê kirdkî ra ameya pê. Na grûbe her roja dişeme saete 17:00-19:00 de weqfe de kom bena. Heme endamê Grûba Wendişî mîyanê hewteyî de yew kitabê kirdkî wanenê û yenê pêser ser o munaqeşe kenê; fikr û analîzanê xo muşterek kenê.

Grûba Wendişî ya kirdkî verê cû Diyarbekır Sanat Merkezi de kom bîyêne la 17.11.2014 ra nat Şubeyê Dîyarbekirî yê Weqfa Îsmaîl Beşîkçî de xebata xo dewam kena.

Yewna xebata kirdkî ya muhîme ke Şaxê Dîyarbekirî yê Weqfa Îsmaîl Beşîkçî de bena, Grûba Nuştişî ya Kirdkî ya. Na grûbe de hîna zaf nuştoxê ciwanî ke prosesê rojnameyê Newepelî de dest bi nuştiş kerdo, ancî namzedê nuştoxîya kirdkî yê ciwanî her roja yewşeme saete 11:00-13:00 de yenê pêser. Grûba Nuştişî îdareyê edîtorê rojnameyê ma û eynî wext de îdarekarê Şaxê Dîyarbekirî yê Weqfa Îsmaîl Beşîkçî nuştox Roşan Lezgînî de sey xebata atolye şuxulnayîşê ziwanê nuştekî, awankerdişê metnî, xuliqnayîşê eseranê edebî û problemanê nuştişî ser o munaqeşe kena.

Adresê Weqfê wina yo: Peyê Galeria, kîşta Otel Dedeman de, Oryıl My Office A Blok, Qat 2, No: 2, Dîyarbekir.





# Haşimê Apî Îsî

Haşimî zimistanî ke şamîya mal û dewarî dêne ci û kewtêne raye, çê bi çê cêrêne

**Akman Gedîk**





Ap Haşim, juyêde ne kilmek ne kî derg bî. Pirnikçewt bî. Hînî bi serê zonî mordemî de qese kerdêne. Çekûyî fek ra kêm vecîyêne. Juyî ke cira çîyê pers bikerdêne, ne "Ya!" ne kî "Ney!" vatêne. Herme antêne we û vileyê xo hetê çepî ser hejnêne, sere tadêne.

Hemseranê xo de têsere nêkerdêne, zafêrî xortan de cêrêne. Xortan cirê meseleyên erotîkî qese kerdêne. Weşa ci şîyêne. Esasî zere ra pak bî, ê deyî çike bî, fek ra bî. Kesî cira xirabîye nêdîbî. Xortan na kêmasîya deyî gegane zêde têvdêne. Înan meseleyên ke eslê xo çin ê, qese kerdêne û her hînî kî zûrî re cikerdêne zêde.

Hema zûr-raşt, meseleyî weşa Apê Haşimî şîyêne. Destçep (solax) bî. Her karê xo bi desto çep kerdêne. Taxa xo de, werteyê dewe de raştê kamcî domanî bibîyêne, bi desto raşt ê pêguretêne û bi desto çepî kî çilmê pirnika înan kerdêne pak.

Rojê xeberê êna, vanê ke "Haşim, wistewreyê to merdo. Şîyo rahma Heqî. Bi qeydeyê xanima xo cira xeberdar bike, bere çêyê pîyî." Pepûg Haşimî mecêro, bi senê qeyde vaco. Çêyê pîyê cênîya eyî dewêde bîne der o. Kuno zere vano "Erê hazir be, ma şonîme çêyê pîyê to." Cênikê vana, "No waxtê kar û gureyî, çêyê pîyî!" Haşim hêrs beno û "Vanê pîyê to nêweş o, bêhal o, cile der o. Ma dolimê şîmê seredane" vano û vecîno teber. Nêm seate tepîya êno zere ke cênike hona hazir niya. "Erê ti qey hona hazir niya?" vano cira. Cênike vana "Hela vinde, karê destê min biqedîyo, ma şonîme." Haşim reyêna vecîno teber, peyser êno ke a ancî hazir niya. Hêrs beno, vano "Min de qaşikê deyî yo korî nêne. Merdo, nika do we. Ecele bike, ma biresîme ceneza!" Eke nîya vano, cênike pêhesîna ke pîyê xo merdo, dest kena ci, berbena.

Ver bi wisarî xora karê çêyan nêqedîno. Haşim şevaqê şodirî de vaştêne ra, kewtêne raya çêyan ser. Bêguman dewe de linga xo fistêne re her çêyî. Haşim ke waxtê kar û gureyî de bişîyêne kamcî çêyî, xortan qestikane dest kerdêne bi ju meseleya erotîke û "Apo Haşim, ti zana se bîyo?" Apê Haşimî sere hejnêne û "Ero lajê dele, ez çi zana se bîyo. Hela vaje, ma kî bizanîme" vatêne cira. Haşimî, xortan ra ya "Lajê dele" ya kî "Oşpî çociğî„ vatêne. Na çekûye tirkî ra dên guretbî. La xortan ra kesî zereyê xo cira nêguretêne. Kulîne hal-wezîyetê Haşimî zanitêne. Xortan, handê ke cirê qale meseleyanê erotîkî bikerdêne û bivatêne "Apo Haşim, hela ma rê tayê yardim bike!" Na qesa bese bîye. Apo Haşim, bi meseleyanê erotîkî huyêne, xo ra vêrdêne ra û "Ero bes o, oşpî çoçixî! Bes o, lajê dele! Şima ez kişta" vatêne. Bi na şêwe karê dinya bi herme û doşanê Haşimî biyamêne kerdene kî, xemê ci nêbî. Xortan kî xora na waştêne.

Haşimî zimistanî ke şamîya mal û dewarî dêne ci û kewtêne raye, çê bi çê cêrêne. Çêyê xo de zêde nêmendêne. Xora hedrîya xo çê de niyamêne. Zimistanî cîranî ke çêyan de amêne pêser, ya qalê dewrê verî, ya kî qalê remnayena çênekan kerdêne.

Xortî, mexsus kewtêne re Haşimî, nameyê ju cênike ardêne re vîrî û "Apo Haşim, na cênike senên a?" perskerdênê cira. Apê Haşimî kî "Aye tewr rojê nêdiya. A hînî dana ke qet pers mekerê" vatênê înan ra. Goreyê fikrê Apê Haşimî, her cênîye tewr şenik dihîrê birakên xo est ê. Tayê cênikî hêrs bîyêne û "Ero Haşo Haşo, çi kena tayê boyê Heqî bike! Handê zûrî kî nêbenê" vatêne cira. Haşimî kî "Guna vileyê min de bo!" vatêne.

Dem zimistan o, Haşim û xortî çêyê ju cîranî de ronîşte benê. Xortî mexsus cira "Ma filane senên a, bêvane senên a?" pers kenê. Apo Haşim "Lajên delan, mayên şima kulî kî danê. Min de cayê sereyê şima nayo!" vano ciraç

Haşim, xortan ra ke hêrs bîyêne, milqîya xo "Cayê sereyê şima nî" bîye. Xortan ra juyê "Apo Haşim, ti vana mayên şima danê. Ma ti maya xo ra nêvana çi?" pers keno cira. Pişkîna huyayişî ginena bi Haşîmî ro û "Ero oşpî çoçixî, maya min nêdo. Eke bidêne ewro çend hebî ki kewtêne re min dest." vano.

Eke qalê çîyê muhîmî bibîyêne, ma vacîme qalê dewrê verî, qalê eşîrîye, araq dêmdîyêne re Haşimî ser, qesa vûrnêne û xortan ra "Ero bêrê, ma qozan kay bikerîme!" vatêne. Hetê Gimgimî de ju kayê kaxitan est o, cira qoz vajîno. Zonê kayî de; asî ra ga, dide ra îkîlîye, hîrê ra berde/parte vajînê. Funksîyonê berde tewr girs o û hîris hûmarî hesabîna. Aye ra tepîya as (ga) o û des hûmarî say beno. Dide (îkîlî) kî des hûmarî say beno, la funksîyonê gayî ra tepîya yo. Haşimî, kayê qozî ra zaf heskerdêne. Zimistanî çêyan de zafêrî qoz amêne kaykerdene. Xora bi çar kesan êno kaykerdene. Peyayên têduştî, hevalên jubînî yê kayî yê. Ê şîkînê qaytê kaxitanê destê jubînî bikerê. Rojê ancî qoz kaykenê, rewşa Haşimî û hevalê deyî zaf rind nêasena. Cirê vîst hûmarî lazim ê. Berde reqîban de, as kî Haşimî der o. Çi kamî der o, kes nêzano. O yo ke kaleka Haşimî der o, hevalê xo ra "Serbest kay bike. Haşimî de ga (as) çin o" vano. Eke nîya vano, Haşim hêrsin hêrsin, bi gayî şîrpîne masa ra ano û "Ero, no bolê maya to yo? Ma, no ga nîyo çik o?" vano. Bi na juye pêro mûsenê ke ga Haşimî der o.

Çîyo ke bî, Haşim kesêde yardimsîn bî. O roja tenge de kamî rê her çi ke lazim bo, lêwe de hazir û nazir bî. Coka milqiyên deyî zorê xortan nêşîyêne.

Birayê Haşimî, dolimê Haşimî dawetê Almanya keno. Haşim, şono bi Almanya. Almanya de derezayên eyî kî zaf ê. Xaftila xortê çepgîrî vecînê, ênê. Merhebatîye danê bi jubînî. Birazayê Haşimî "No Apê min o. Welat ra newe amo û qorîçî yo" vano. Eke nîya vano, xortên çepgîrî pêbawer benê û dest kenê bi ci, Apê Haşimî rê propogandaya sîyasetî kenê. La Apo Haşim cira çîyê fam nêkeno. Handê ke herman anceno we û"Heya, şima raşt vanê" vano. Demo ke xortên çepgîrî vazenê ra, birazayê Apê Haşimî ra "Wule apê to îqna bî. Ma hînî bawer îme, ke peyser şoro welat, qorîçîtîye caverdano" vanê. Pişkîne kuna ra birazayê Haşimî û "Gelê hevalan min xo rê yarenîye kerde. Çi qorîçîtîye ya heyran" vano. Çepgîrî "Wule, ma qese kenîme, ap sade herme anceno we. Tawa nêvano ez qorîçî niya" vanê.

Almanya de rojên Haşimî ke benê temam, peyser şono bi dewe. Juyo xort kuno re Haşimî ser û "Apo Haşim, cênîyên Almanya senên ê?" pers keno cira. Haşim sere hejneno, û "Wule maya to se dana, ê kî henên ê" vano. Xort, vengê xo kirt birneno.

Haşim, o payîzî gineno piro, mireno. Hama her zimistanî ke qozî kaybenê, nameyê Haşimî êno dekernayene. Herkes "Ê Haşimî fek bî. La peyayê zê deyî zerepak çîne bî. Cîranêde zaf baş bî" vano.

Merdene ra dime zaf çîyî benê çîrokî. Haşim, hona kî ser û binê qesa tayîne de bo kî, êno vîrîardene. Vajîno ya „Kes mîno kuye niyo." Roja kamî ke amê, şono. Muhîm o yo, ke çend mordemî qalê to bikerê.

Rojeva Hefteya Mafên Mirovan:

# Şer, koçberî û penaberî

**Pîrozbahiyên 10-17'ê Kanûnê, rojên Hefteya Mafên Mirovan li Amedê bi hin çalakiyên saziyên sivîl hatin destpêkirin. Ev hefte ji ber ku 66 sal berê Danezana Gerdûnî ya Mafê Mirovan ji alî Neteweyên Yekbûyî ve hatibû pesendkirin, weke Hefteya Mafê Mirovan tê pîrozkirin. Rojeva çalakiyên ên li Amedê îsal şer, koç û binpêkirina mafan e**

Mustafa Turan

Hefteya Mafê Mirovan, (10-17'ê Kanûnê) li Amedê di bin serperiştiya Komeleya Mafê Mirovan a Şaxa Amedê, Baroya Amedê, Weqfa Mafê Mirovan a Tirkiye, Komeleya Hiqûqnasên Mezopotamya û Odeya Pijişkên Amedê, bi hin çalakiyên cihê tê pîrozkirin. Ev çalakiyên ku di 10'ê Kanûnê de, li Gundê Mehzer ê li ser sînorê Pirsûs û Kobanê, bi daxuyaniyeke çapemeniyê ya ji alî ev saziyên ku serperiştiyê dikin ve hatin destpêkirin, di 11'ê Kanûnê de, ji bo piştgirîdayîna girtiyên nexweş ên zindanî, ji zindaniyan re şandina nameyan, di heman rojê de li Salona Pêşangehê ya Şaredariya Amedê pêşandana wêneyan a bi sernavê 'Dayikên Şemûyê û Wundayî' û 12'ê Kanûnê de bi panela bi sernavê 'Pirsgirêka Hiqûqî û Mirovî ya Şengalî û Rojavayiyan û Pêşniyazên Çareseriyê' ya li Hola Şanoyê ya Şaredariya Amedê ku ji alî Baroya Amedê ve hate lidarxistin dom kirin. Daxuyaniya li Gundê Mehzerê yê li ser sînorê Pirsûs û Kobanê ku bûbû çalakiya destpêkê, li ser navê saziyên ku serperiştiya çalakiyên vê hefteyê dikin, ji alî Serokê Şaxa Amedê ya Komeleya Mafê Mirovan Racî Bilîcî ve hate xwendin. Racî Bilîcî destnîşan kir ku îsal 66. Salvegera ji alî Neteweyên Yekbûyî ve pesendkirina Danezana Mafê Mirovan e û got: "Sedemê ku me çalakiyên Hefteya Mafê Mirovan li ser sînorê Kobanê da destpêkirin ev e ku, li Kobanê, li dij êrîşan berxwedaneke mezin heye û ev berxwedan bûye berxwedaneke dîrokî ya dinyayê"

Di panêla bi sernavê 'Pirsgirêka Hiqûqî û Mirovî ya Şengalî û Rojavayiyan û Pêşniyazên Çareseriyê' ya ku Serokê Lêkolînên Koç û Penabertiyê Metin Çorabatır, Serokê Rêxistina Afûyê ya Navneteweyî Taner Kılıç, Nûnerê Komeleya Hemwelatiyan a Helsînkî Veysel Eşsiz, Serokê Baroya Amedê Tahir Elçî û Serokê Odeya Bijîşkan a Amedê Cengiz Gunay weke axaftvan beşdar bûbûn de, axaftina destpêkê ji alî Serokê Baroya Amedê Tahir Elçî ve hate kirin. Elçî di axaftina xwe de bi bîr xist ku li Tirkiyeyê, berê jî koç çêbûne. Di dema Jenosîda Helebce de bi dehhezaran kurdên başûrî ji axa xwe koçî Bakur an jî Tirkiyeyê kirine û piştî êrîşên DAIŞ'ê jî dinya rastî dîmenên wê demê hatine. Elçî anî ziman ku, her çiqas di xwe de çewtiyan bihewînin jî prosedorên hiqûqî yên penaberan ên Tirkiyeyê hatiye asteke baş û got: "Lê belê di pratîkbûyîna yasayên heyî de pirsgirêk hene û wek kesên hiqûqnas, divê di babeta penaberan de em hewl bidin ku Tirkiye peywirên xwe yên ku peymanên navneteweyî li ser wê ferz dikin bi cih bîne" Tahir Elçî diyar kir ku armanca wan ew e ku pêdiviyên jiyanê yên penaberên li Kurdistan li gor pîvanên mirovî bi cih bînin û li gor van pîvanan hiqûqê bi rêkûpêk bikin. Elçî got: "Wek saziyên sivîl û yên mafê mirovan, ji bo em berpirsyariyên xwe bi cih bînin çi ji destê me bê emê bikin" Serokê Odeya Bijîşkên Amedê Cengiz Gunay jî di panêlê de bi şanîdana slaytê, kar û xebatên sazî û dezgehên herêmê yên ji bo bicihanîna pêdiviyên tendurustî, adanî, hewandin û hemû pêdiviyên jiyanê yên penaberên ezidî û rojavayî vegot. Cengiz Gunay, da zanîn ku ji destpêkê ve ew bi dezgehên Başûr û Rojava yên bi babeta koçê re eleqedarin re têkildar bûne, ji bo bicihanîna pêdiviyên bingehîn ên penaberên Bakurê Kurdistan û bi taybetî jî yên Amedê wan dest bi hin kampanyayan kirî ye, wek Odeya Bijîşkan wan bi fedakarî xebatan meşandine û ji ber van xebatan carcaran ew û hin dezgehên dewletê rikberî hev bûne. Gunay got: "AFAD'a ku armanca wê ya sereke bicihanîn û organîzekirina pêdiviyên penaberan e, berovajiyê vê armanca xwe carcaran di hin xebatên me de astengiyan ji me re derxist" Gunay, da zanîn ku tenê li Amedê ji 1700'î bêtir penaberên ezidî û rojavayî hene û dom kir: "Di mehên destpêkê de her çiqas kêmasî hebin jî me pêdiviyên bingehîn ên penaberan bi cih anî, lê belê ji ber ku şer pir dom kir û penaber venegeriyan axa xwe, em di babeta domandina bersivandina pêdiviyên penaberan de tengezar in" Panêl bi hin axaftin û besivandina pirsên beşdaran bi dawî bû.







**Wê çalakî dom bikin**

Çalakiyên Hefteya Mafê Mirovan, 13'ê Kanûnê roja şemûyê, wê bi meşa protestoyî ya bi band û bêdeng a ji bo piştgiriya çalakiya rûniştinê ya Dayikên Şemûyê dom bike. Meş wê Seet di 11'an de li ber Plazaya AZC'ê destpê bike û wê li qada Abîdeya Mafê Jiyanê ya Parka Apê Mûsa bi dawî bibe. 14'ê Kanûnê roja yekşemê, wê ji alî Weqfa Mafê Mirovan a Tirkiye ve li Qada Jiyana Hevpar a Sumerparkê bi sernavê 'Travmaya Civakî' komxebatek bê lidarxistin. Di 15'ê Kanûnê de wê bi zarokên ku di zindana Tîpa D ya Amedê de ne, li ser babeta 'Binpêkirina Mafan' hevdîtinek bê pêkanîn û piştî hevdîtinê, seet di 12'an de li ber zindanê, ji bo bala raya giştî bikêşin ser binpêkirina mafên zindaniyan wê daxuyaniyeke çapemeniyê bê dayîn.

Di 16'ê Kanûnê seet di 11'an de, Komeleya Mafê Mirovan a Amedê, wê bi daxuyaniyeke çapemeniyê 'Rapora Gorên Komî' ya ku piştî çend salan ji nû ve hatiye rojanekirin disa ji raya giştî re ragihîne. Di heman rojê seet di 18'an de, li Sînemaya Berîkê ya Bûrhan Karadenîz a Şaredariya Amedê, wê belgefîlmê 'Benim Çocuğum' ê Can Candan ku li ser pirsgirêkên kesên LGBTT û malbatên wan hûr bûye bê pêşandan. Piştî pêşandana film wê bi endamên Rêxistina LGBTT re gotûbêjek bê pêkanîn.



Kurdiscat

# Hevkariya kurd û katalanan

**Kurdiscat, li Katalonya'yê bi Hevkariya kurd û katalanan xebatan dike**

Piştgirî û xebatên gel û komên cûrbecûr yên bo serxwebûn û azadiya Kurdistanê û piştgiriya Kurdistaniyan li gel hemû cîhanê roj bi roj zêde dibe û tevgerên têkildarî mijarêjî têne vekirin. Weke tê zanîn bi taybetî jî piştî ku DAIŞ'ê berê xwe da Kurdistanê, daxwaza serxwebûn û azadbûna kurdistaniyan hate astake ku hemû cîhan bibîhîze. Herwiha, encamên şerê ku Kurdistan li hemberî DAIŞ'ê dide û rewşa Rojhilata Navîn jî serxwebûna Kurdistanê li gel hemû cîhanê meşrû dike. Tevî vê jî li gelek deverên cîhanê piştgiriyên çekî, siyasî, dîplomatîk, mirovî, çandî û lojistîk jî bo Kurdistanê tê kirin. Bi boneya vê, li Ewropa û DYA'yê hejmareke zêde kampanya û xebat dest pê bûn. Li aliyekî cîhan di warî çekî û teknîkî de piştgiriya Kurdistanê dike û li aliyê din jî welatiyên dewletên cûda bi avakirina sazî û komên xebatê, bo Kurdistaniyan piştgiriya xwe nîşan didin.

Herwiha di vê çarçoveyê de li Amerîka ya Latîn, Qomîteya Piştgiriyê ya Kurdistan-Latîn, li Fransayê Qomîteya Piştgiriya Kobanê û Gelê Kurdistanê, li Swêdê dîsa Qomîteya Piştgiriya Kobanê û Gelê Kurdistanê, li Îspanya'yê Qomîteya Piştgiriya Rojava û Gelê Kurdistanê hatibû avakirin. Endam û piştgirên van qomîteyan piştgiriyeke qedir giran bo Kurdistanê şandibûn û hîn jî ew berdewam e.

Niha jî li welatekî din yê ku ew jî weke Kurdistanê di bin desthilatiya dewleteke ku dixwaze jê veqete de ye qomîteyek hatibû avakirin û niha xebatên xwe gurtir kirine. Welatê Katalanaan ku beriya demeke nêz bo serxwebûnê referandûm jî ceribandibû, Qomîteya Piştgiriya Katalan û Kurdistanê (Kurdiscat) hat avakirin û gelek Kurdistanî û Katalanî bi hev re li ser mijarên çawaniya piştgiriya bo Kurdistanê tevdigerin.

Li Herêma Xweser Katalonya'yê di sala 2013'an de Kurdiscat bi beşdariya gelek xwendekar, akademisyen û karkerên kurd û katalan ve hatibû avakirin. Herwiha hem di rêvebiriyê de û hem jî weke endam ji welat û gelên din jî gelek kes di nava xebatên qomîteyê de cih digirin. Qomîteya ku amblema wê ji ala Kurdistan û ya Katalonya'yê pêk tê heta niha li ser mijarên weke ekolojî, azadîxwazî, pirsgirêkên jinê, demokrasî hwd. gelek konferans, komxebat, panel û bernameyên cihê lidarxistibû.




Qomîteya ku bêhtir bi rêya derfetên enformasyonî di derheqê geşedanên li Kurdistanê de agahiyan berhev dike, bûyerên ku diqewimin bo cîhaniyan radigihîne û bo ku raya giştî ji Kurdistanê hayîdar be xebatên rengecihê jî dimeşîne.Beşek ji xebatên qomîteyê jî danasîna Kurdistanê, agahdarkirina rewşa demî û bêhtir meşrûkirina daxwaza serxwebûnê ye. Bo vê jî bi xebatên cûda li ser meseleya serxwebûn û azadiyê qomîte li gelek cîhan bernameyan lidar dixe, kampanya dide destpêkirin û bi rêbazên cûda xebatên têkildarî mijarê didomîne.


Lara Villalon
ara.cat-News



Endam û berpirsên qomîteyê ku di derheqê pêdiviya avakirin û xebatên xwe de agahî dan rojnameya me, diyar dikin ku rêgeha ku Kurdistanê tê re derbas dibe pir dişiba ya Katalonya'yê, êş û azara ku li Kurdistanê hatiye belavkirin, di demên paş de li Katalonya'yê jî hatine jiyandin û herdû welat di warê siyasî, çandî û dîrokî de dişibin hev. Li gor destnîşankirina wan bo ku hemû gelên bindest û walatên dagirkirî encax dikarin bi hevkariya hev û bi hayîdarbûna hebûna hev dikarin gelek pêşketian pêk bînin. Her wiha bi vê minasebetê jî qomîte hem xebatên fêrbûna zimanê herdû welatan û hem jî nasîna çandî xebatan dike.

Qamîteya ku endamên wê jî kesên antî emperyalist, azadî xwaz û antî otoriter, ekolojist û anarşist pêk tê niha di nava hewldanan de ye ku dezgeheke mezintir û bi hêztir avakin. Herwiha ji rêvebirên qomîteyê Lara Villalon ku bi xwe katalan e di derheqê xebat û rêbazên xwede bi rojnameya me re axivî. Villalon da zanîn ku bi gelek ciwanên Kurdistanî ve beriya demeke dirêj hev naskirine û dixwestine ku bi hev re xebateke bikin. Villalon wiha got; "Bi teybetî armanca me ya sereke ew bû ku em cihana rojava ya faşist û jî mijarên wiha dûr, ji Kurdistanê hayîdar bikin, bi hevkarî daxwaz û têkoşîna xwe bo dinyayê bidin nasîn".

**Armanca qomîteyê nasandina daxwaza serxwebûna Kurdistan û Katalonya'yê ye**

Villalon ku di derheqê rewşa dawî ya Kurdistanê û têkoşîna serxwebûna Kurdistanê ya dîrokî de jî axivî wiha dirêjî da axaftina xwe, "Em dizanin ku niha Kurdistan di nava şerekî dijwar de ye û ew şer ne tenê bo Kurdistanê lê ji bo hemû gelên cîhanê ye. Kurdistan xwedî dîroka têkoşîneke pir giran û bi berdêl e. Welatê me Katalonya jî hema bêje heman geşedan hewandine. Em jî serxebûn azadiyê dixwazin, Kurdistanî jî. Madem ku daxwaz û têkoşîna me heman e, dibûya em zûtir bihatana ba hev, me hev nasbikira, bo ragihandina taxwazên hev me bi hevkarî xibat kirirana. Li welatê me gelek kurd hene û em dixwazin bi hemûyan re bêne ba hev û tevbigerin. Dive em bo Kurdistan û Katalonya'yê xebatên hevkar bimeşînin û hevûdin bidin nasandin. Ew sedsala ku şere Kurdistanê ber bi azadî u serxwebûne ve diçe bi zanîbûn ji aliye cîhana rojava ve êdî hatiye pejirandin û dîtin. Ev şerê ku di nava tekoşîneke dijwar de derbas dibe bi teybetî 'jinên kurd' di dilê me de cihekî cûda digire. Li cîhanê jin niha weke camîd tê dîtin û her tişt beden û ramana jinê weke nesne dibîne. Îro Yekîneyen Jinên Pêşmerge û Yekîneyên Parastina Jinan li Kobanê heyranî û bala me hemûyan dikşîne. Serhildêriya wan bo me hemûyan rê û rebazên çawaniya bi sîstema nêr re şer kirine nîşan didin. Ew bo hemû cîhanê tişteki balkêş e. Em jî têkoşîn û cesareta wan sûd werdigrin û bi habûna wan em şanaz û serfiraz in. Tevî vê rastiyê eêb e ku cihana rojavayî dev ji nêzikahiya xwe ya fantazî û oryantalist bernade. Divê em li hemberî vê rastiyê jî destê hev bigirin û mil bidin hev. Armanceke qomîteya me jî ew e ku em serxwebûna Kurdistanê bixin rojeva cîhanê. Em bawer in ku bi milyonan kesên ku weke me difikirin hene û heke em bikaribin hêza wan jî bi ya xwe ve bikin yek emê karibin ku gelek serfiraziyan bi. Dilê me bi Kurdistan û kurdistaniyan re ye. Bijî Kurdistan, bijî Katalonya."

BasNûçe 15-21 Kanûn 2014







Warê Şaristaniyê

# Riha 2

Li bin axa Rihayê, li nêzî Navça Heweng rezerwên fireh ê fosfatê û xammadeyê kiremîdê, li Xelfetî û Hawengê asfalt, li Çiyayê Germûş û Tektekê jî damarên mermer hene.

Piştî kû li herema GAP'ê avdana zêwiyan destpêkir, kiştûkala avî û nebatên sanayiyê jî hatin çandin. Piştî çinîna pembû fabrîqayên û sanayiya çirçir pêşket. Li taxên dora Rihayê herema sanayî a organîze hat avdan.

### GAP û Çemê Firadê

Bi tesîsên avdanê ê ser Firadê, bi dehhezaran hektar ax wê bê avdan. Gola bendava GAPê, li Kurdistan û Tirkiyê gola herî mezin a bendavê ye. Piştî avgirtinê li Rihayê gelek guhertin çêbûn.

Wek mînak di gola Bendava Firadê de sporên ser avê destpêkir. Îro bi sedan xortên Rihayî bi vê sporê mijûl dibin. Dîsa gelek baldarên sporên avî tên Rihayê. Li bajêr ji niha ve tûrîzma gola bendavê destpêkirî ye.

Zêdetirê Firadê çemên kû di xaka Rihayê de derbas dibin an jî, ji wîr dizên, her tim geş nînin. Gelekên van çeman car caran diçikin an jî ziwa dibin.

Firad ji ser Siwêregê ji herema Meqtelan dikeve xaka Rihayê. Çem di erdîma Rihayê de 270 km diherike û sînorê nav Entab, Semsûr û Rihayê tesbît dike. Firad wek damara jiyana Rihayê ye.

Ava Firadê bi dû tûnelên mezin li Deşta Harranê û derûdorê tê belavkirin û jiyan dide van zêwiyan. Li gor planan ku erxên avdanê biqedin wê li heremê 8882 hezar hektar ax bê avdan.

Li ser vî çemî di nav sînorê Rihayê de Bendava GAP'ê û Bendava Birecûkê hatiye avakirin. Projeya GAPê, ku nawend Riha ye, li Rojhilata Nawîn proja herî mezin e. Di bin baskê GAP'ê de 13 baraj û santralên hîdroelektrîk tên çêkirin. Ji van tesîsan salewext 9 milyar kîlowat kareba tê hilberin ku ev hijmar ji nîvî zêdetirê pêdiviya Kurdistan û Tirkiyê ye. Lê li Kurdistanê jî Kurd ji % 5ê elektrîka xwe bikartînin. Yanê rejima Enqerê GAP'ê rasterast ji bo pêdiwiyên enerjiyê avakiriye. Dîsa dewlet vê projê wek panjahra wejîna netewî a Kurd dibîne.

Xeter û xesarekî GAP'ê jî ewe ku, dîrok û şopên şaristaniyên ser Kurdistanê di bin avê de dihêle. Heta niha 5 hezar kilometreqare ax di bin ava Firadê de maye. Di vê sahayê de bi sedan heremên arkeolojîk hebûn. Wek minak li Gundê Qantara Hilwanê, nawenda arkeolojîk a bi navê Newala Çolî, ku di dîrokê de nawenda rûniştvaniyê a herî kevn e, di bin avê de maye. Dîsa Navça Hilwanê di sala 2000an de di bin avê ma. Nawça Samsat a dîrokî bisalan berê ji alî avê ve hatibû daqurtin.

Bendava Birecûk û Qargamîşe jî gelek nawendên dîrokî dibin avê de hiştin. Bendava GAP'ê mîrata mirovahiyê xwar. Bi wî awayî çawê alema arkeolojî û dîrokzanan ji ser berhemên Kurdistanê hatin qutkirin.

Armancekî Rejima Enqerê ji avakirina van bendavan bikaranîn û sehêtiya avê li dijî Sûrî û Îraqê ye.

Ji bilî Ava Firadê li nêzî nawenda Rihayê Çemê Cûlap, Çemê Qereqoyin, Çemê Cawsak, li Navça Pirsûsê Çamê Belîh, li Wêranşarê Çemê Xebûr, Ava Zengeçûr û gelek av û rûbarên demsalî jî hene.

Çavkaniyeke din li Rihayê golên Xelîlulrahman û Aynizelîha ye. Ev herdû gol ji alî gelê Rihayê ve pîroz tên qebûlkirin. Gola Xelîlulrahman, li bin siya Kela Rihayê ye. Gol, 150 metre dirêj û 30 metre jî fireh e. Di ava golê de bi hezaran masiyên sazan hene.

Ev masî pîroz tên qebûlkirin û nayên xwarin. Masiyên golê ji alî xwerxwazan ve tên xwedî kirin. Li derûdora golê, darên spîndar, hêjîr, tû, hinar û bî hene. Gol di heman demî de, ji alî bajariyan ve wek devereke bêhdanê jî tê bikaranîn.

Nawenda vê dewlemendiyê, Bajarê Rihayê, ji xezîneyên xwe, para xwe nagre. Dewlet qasî kû ji vî bajarî dimije, ewqas derfet nîşanî deverê nade. Wek mînak li Rihayê, li kêleka Bendava GAPê, mirovekî Kurd, ji hatina netewî a xeyrî safî salawext 1238 Dolar distîne. Li Kocaelî ya ku bi kareba GAP'ê dijî jî mirovekî Tirk salawext 7349 Dolar distîne. Ev cewazî dad û edaleta sazûmanê radixe berçavan.

### Rêvebirî

Riha ji bakûr ve cîranê Amed û Semsûr, ji rojhilat ve cîranê Mêrdîn, ji rojava ve cîranê Entab û ji alî başûr ve jî cîranê Rojavayê Kûrdistanê ye.

Bajarê Rihayê li gor pergala fermî parêzgeh e. Bi navên Bîrecûk, Heweng, Girxezal, Akçakale, Xelfetî, Hilwan, Weranşar, Pirsûs (Suruç), Harran û Siwêreg nawçeyên wê hene. 21 bajarok û 671 gûnd jî bi Rihayê ve girêdayî ne.

Piştî koçberkirina gundiyan û çêkirina GAP'ê nifûsa bajêr bilind bû. Li gor hijmarên dawîn, nifûsa bajêr tevî navçeyan nêzîkî du milyon e.

Niştecihên Rihayê bi giştî Kurdin. Li nawenda bajêr hin malbatên Tirkmen dijîn. Li Navça Akçakalê ji hin Ereb hene. Hin eşîrên Turkmen ê wek Qeregeçî, ku di demên Osmaniyan de bi zorê li Rihayê hatibûn bicîhkirin, asîmîle bûne û xwe Kurd dihesibînin. Di nav Kurdên Rihayê li alî Wêranşarê çen gundên Êzdî hene. Şêniya bajêr yê din tev Muslumanin. Kurdên bakûrê Rihayê, li herema Siwêregê bi zarava Zazakî diaxifin. Li bajêr herçiqas di demên kevn de gelek Ermenî û Suryanî hebûn jî piştî qetlîaman an jî zextên salên dawîn ji bajêr koç kirin.

### Sûk

Rihayî piştî îsota tûj duxwun bi ser de titûna sert dikşînin. Titûna Rihayê bi piranî ji Semsûrê tê. Di nav cixarakêşan de ev titûn gelek biqedr e. Li sûka Rihayê her roj bi sedan kîlo titûn tê firotin. Hunermediya sifirvaniyê, li Rihayê jî gelek kevn e. Li gor lêkolînan li Rihayê mînakên herî kevn ê sifirvaniyê hatine dîtin. Heta salên 1960'an li Sûka Qazançiyan û li Sûka Huseyniye 1000 dikkan û 300 sifirvan hebûn. Piştî ku berhemên fabrîqasyon belav bûn, ev pîşe jî her çû ji holê rabû. Îro li sûka Rihayê tenê 10 dikan û 30 sivirvan tene mane. Ji aliyê din ve hostayiya sivirvanên Rihayê nayê munaqeşekirin. Di şertên îro de, ji bo tûrîstan amblem û sembolên deverên dîrokî li ser tepsî û cezweyan tê neqişandin.

Yek ji endamên sûka Rihayê kurkvan e. Taybetiyeke kincên Rihayê kurk e. Kurk ji pûrtê berxên 5 mehî tê dirûtin. Dervayê kurkan ji qumaşê şaqat tê durûtin. Zivistanê ji ali kesên pîr ve tê lixwekirin. Kevok perçeyeke jiyana gelê Kurd ye. Ev teyr ji bo Kurdan wek mehlûqekî mîstîk e. Li Rihayê ji 5 hezarî zêdetir malbat kevokan xwedî dikin. Ji bajarên wek Entab, Semsûr û navçên wek Wêranşar û Siwêregê jî gelek kes tên ji kevokfiroşên Rihayê kevokan distînin.

### Zanîngeha Harranê

Xirabeyên Dibistana Harranê yek ji mîratên herî balkêş yên Rihayê ne. Dibistan li gor gelek lêkolîner û zanistan, li cîhanê zanîngeha yekem e. Herçiqas dîroka damezrandina vê zanîngehê neyê zanîn jî, li gor texmînan bi sedan sal b.z evder nawendeke lêkolîn û zanîstiyê bûye. Li gor lêkolînên zanist Corc Sarton eşkere bûye ku, li rûyê cîhanê xebatên li ser geometrî û kiştûkalê cara yekem li vê zanîngehê hatine kirin. Zanistên vê derê li Deşta Harranê cokên avdanê çêkirine û çavdêriya livên cismên fezayî kirine. Piştî belavbuna Ola Îslamê jî, rewşenbîrên Îskenderiyê bi piranî berê xwe dane Harranê. Bi hatina wan, Zanîngeha Harranê bûye nawendeke werger û felsefê. Di sedsala 7 û 8an de, bi sedan berhemên Yûnana antîk, ji zimanê Suryanî û Yûnanî ji bo Erebî hatiye wergerandin. Di van deman de li Zanîngeha Harranê di pênc beşî de ders hatine dayin. Ev; astronomî, tendurustî, matematîk, felsefe û ol bûne. Di vê zanîngehê de cewziya olan tûne bûye. Li Harranê Saabî, Suryanî, Musluman û Îsewî di nav hev de mane û bi hevre xwendine. Bi vê taybetiya xwe Harran, zanîngeheke navnetewî bûye. Dîsa li Harranê zanîstên navdar ê wek Îbnî Farabî jî xwendine. Li ser xerabeyên Zanîngeha Harranê bi sedan sal, bi hezaran şagirt perwerde dîtine û li Kurdistan, Erebistan û Anatoliyê roniya zanistiyê belav kirine.

### Kela Harranê

Yek ji berhemên ku li Harranê li ser piya maye, Kela Harranê ye. Kele bi surên bajêr ve hatiye avakirin. Di demên cûrbecûr de wek qesra hukumdariyê hatiye bikaranîn. Sê qat e. Di dema Xîlafeta Fatimiyan de di sala 1059'an de hatiye restorekirin.



## Efsaneya Nemrûd

Riha di alema mîtolojiya pîroz de cîhekî girîng digre. Helbet ji efsaneyên Rihayê jî bêguman a herî girîng Efsane ya Xelîl Îbrahîm û Nemrûd e. Xelîl Îbrahîm zirkurê Nemrûd e. Nemrûd qraleke zalim û pûtperest e. B.z di salên 2100'an de jiya ye. Xelîl Îbrahîm tade û pûtperestiya Nemrûd napejirîne û duxwazwe wî bîne ser rêya rast. Rojek pûtên qesra Nemrûd dişkîne. Ji ber vê yekê tê girtin û bi mirinê tê cezakirin. Wê bê şewitandin. Bi fermana Nemrûd hemû êzêngên devera Rihayê tên topkirin. Li cîhê gola îro ji êzingan girekî mezin tê çêkirin. Ji bo ku wî bavêjin nav girê agir, li bakûrê kelê du stûnên bilind tên çikandin. Wê werîsên qalind bi van stûnan ve bên girêdan û wek mancînîqan bên bikaranîn. Paşê leşkerên Nemrûd, Xelîl Îbrahîm bi alîkariya van mancinîqan diavêjin nav agir. Gelê Rihayê îro jî ji van stûnan re dibêje 'manciniq'. Dema ku leşker Xelîl Îbrahîm diavêjin nav girê agir, baranekî nedîtî dibare û evder dibe gol, ezingên lodkirî jî dibin masî. Navê golê dibe gola Xelîl Îbrahîm.

Li aliyê din Zelîha ku ew jî zirkeça Nemrûd e û aşiqê Xelîl Îbrahîm e, dema merasima şewitandina wî digrî. Ji hêsirên çavên Zelîha jî li kêleka gola Xelîl Îİbrahîm, goleki biçûk peyda dibe û gelê Rihayê ji vir re jî dibêjin, 'Aynî-Zelîha', yanê 'hêsrên Zelîha'.

Îro ev herdû gol û masiyên wan di nav gel de pîroz e. Nexweş bawerdikin ku bi ava golê baş dibin.

Li gor Evliya Çelebî li başûrê Kela Rihayê girekî bilid heye. Ev gir zozan û cîhê textê Nemrûd bûye. Nemrûd havînan li vir maye. Li li zinnaran vê derê gelek qurfe û ode hatine kolan. Li gor efsanê Nemrûd berî ku Xelîl Îbrahîm bişewitîne, wî li vêderê hepiskiriye. Ji ber vê yekê evder di nav gel de wek 'Meqamê Xelîl Îbrahîm' tê binavkirin. Rihayî bawer dikin ku, ava jî vê odê dertê pîroz e û taqet dide nexweşan.

Bajarê pêxemberan Riha, qebristana wan e jî. Li nêzî Navça Wêranşar li gundê Eyûb Nebî, turbên Hz. Eyûb, Hz. Rehîme û Hz Îlyas li kêleka hev cîh digrin. Ev gorên pîroz heta salên 1992'an xerabe bûn, paşê hatin tamîrkirin. Tirbe ji alî gelek kesî ve tên ziyaret kirin.

## Harran

Heremeke navdar li Rihayê Deşta Harranê ye. Harran 44 kilometre li başûrê Rihayê ye. Navê deşt û navçeyekî ye. Dîroka Harranê heta 3000 sal b.z diçe. Ev der di dema Hûrrî-Mittaniyan de newenda herî girîng bûye. Bajêr di dema Merwaniyan de peytext û di dema Eyûbiyan de jî nawendeke siyasî buye.

Xaniyên Harranê yek ji remzên Rihayê ye. Dîroka van xaniyan b.z heta salên 3 hezarî diçe. Di demên kevn de ne tenê Mezopotamya, ji transkafkasan, heta keviyên Derya Egê ev stîlê mîmariyê hatiye bikaranîn. Lê îro li hemû Kurdistan û Anatolyê de tenê li çend gundên Harran û Sirûca Navça Rihayê ev xaniyên biqûbe mane.

Dîwarên xaniyan bikevir û kelpîçan tên avakirin û bi çamûrê bihevre tên girêdan. Rêsandina van dîwaran bêtîna ye. Hem ji derve û hem ji ji hindir ve tên sewaxkirin. Qûba xaniyan ji 30 û 40 qor kelpîçan pêk tê. Bilindahiyên dîwaran nêzî 5 metre ye. Orîjîna van avahiyan ji dema Aryenan tê û wê demê wek paristgehan hatine çêkirin û bi navê zîgûrat hatine naskirin.

Piştî salên 1950'an dewletê di çêkirina van xaniyan de bikaranîna kerpîç û keviran qedexe kir. Ji ser vê yekê gundiyan jî êdî van xaniyan ava nekirin.

# 'Hêvî' ya xwendekarên kurd derket

**Xwendekarên kurd yên li Zankoya Enqere 'Hêvî'ya xwe pêk tînin**




Di salên dawîn de ku qedexe û astengiyên li ber kurdî hinekî sist bûn û xwendin û nivîsandina kurdî pêş ve çû, derçûna berhemên bi kurdî jî her gur û geş dibe. Li gelek bajar û heta bajarokên cûda kesên têkildarî wêjeyê berheman diafirînin û govaran çap dikin. Di vê çarçoveyê de meriv dikare bibêje ku hejmara govarên bi kurdî jî gihîştiye hejmareke balkêş. Herwiha li Enqere'yê jî xwendevanên kurd bi derfetên xwe yên kêm be jî govareke balkêş bi navê 'Hêvî' çap dikin. Govara ku ji aliyê xwendekarên Zankoya Enqere'yê ve tê çapkirin taybetiya govarê ev e ku yekser ji aliyê xwandekaran ve tê amadekirin.

Nivîskar û nûnera govarê Esra Çalımlı diyarkir ku li Enqere'yê çend govarên din jî têne çapkirin lê belê ew govar tenê ji aliyê xwandekarên Zankoya Enqere Bêşa Hiqûqê ve tê amadekirin. Çalımlı di derheqê derdorên govaran û amadekirina govarê de wiha got, "Li Enqerê, yanî li paytaxta Tirkiyê warekî ku em bi zimana xwe ve bipeyvin, bi zimana xwe ve bijîn tunneye. Di bin van mercan de em ji zimanê kurdî, ji wêjeya kurdî hêdî hêdî dûr diketin. Ji ber van sedeman em çend heval peyivîn û me got ku 'em jî dikarin ji bo kurdî tiştekî bikin.' Paşê, me biryara xwe da û me dest bi derxistina kovara kir. Li Enqerê ji bo pêşketina kurdî gelek xebat hene. Kurdî bi zimanê xwe ve, bi wêje û çanda xwe ve gelek dewlemend e. Me xwest ku em jî wekî xebatên din vê dewlemendiyê nîşanî hemû kesan bidin."

Çalımlı desnîşan kir ku gelek tenê bi nirxên xwe dikare hebûna xwe bidomîne û bide jiyandin û wiha pê de çû, "Nirxên şênber û razber ên bi kedeke mezin hatine afirandin hêza herî mezin e ku mirovahiyê pêş dixin, çand û huner di pêvajoya dîrokî de pêk hatiye û kategoriyeke dîrokî ye. Edebiyata kurdî ya nivîskî ewçend xurt û dewlemend e lê nikare pêşketin û meşa dewr û dewranê ya bilez xwe nû û nûjen bike. Edebiyata kurdî , ew edebiyatek e ku di nav têkoşîna dijwar a man û nemanê da ye. Eger îro eser û berhemên vê edebiyatê derdikevin û xwe radigihînin xwendevanan, meriv divê bizanibe ku ev bi hezar zehmetiyan tên pê. Mixabin rewşa zimanekî ku ji aliyê 40-50 milyon merivan ve tê peyivîn û edebiyata wî zimanê, îro, weha kambax e. Loma jî, meriv divê vê rastiyê bibîne; nivîskarên kurd îro, ne xwediyê tu îmkan û şertên nivîskariyê ne, biberpirsiyariyeke mezin re rabûne. "

Bo cûdahiya di navbera navbera govara wan û yên din de jî Çalımlı wiha got, "Kovarên bi zimanê kurdî li Enqerê tên derxistin gelek hene. Hinek kovarên edebî û çandî, hinek jî politik in. Hemû kar û barên kovarê xwendekar dikin. Bêhtir jî xwendekarên hiqûqê dikin. Kurd, çi ji hêla zimanê xwe ve, çi hêla wêje û çanda xwe ve gelek xwedî dewlemendiyekê ne. Me jî xwest ku vê dewlemendî bila herkes bibîne û bibihîze. Govara me jî xebata xwe li ser çand, huner û wêjeya kurdî dike. Di nav kovarê me de helbesten kurdî, çîroken kurdî, jiyana mezinê kurdan, danasinê bajaren kurdan heye. Di heman demê de werger jî hene. Kovarê me ne siyasî ye. Nivîsên politik û îdeolojîk tê de tune ne.

# Şaristaniya binê gola Wanê

Ji ber guherîna avûhewayê hin caran ava Behra Wanê vedikişe. Îsal ava behrê qasî 2 mêtreyan vekişiya û bajarê ku di demên berê de di bin avê da mabû derkete holê.

Tê destnîşankirin ku di 15 salên dawiyê da av herî zêde îsal vekişiya, bi taybetî jî ji hin cihên ku kûr nînin vekişiya.

Bi vekişîna avê va bajarên ku di demên berê da hatibûn avakirin û bi rabûna avê va di bin avê da mabûn jî derketin holê.

Serokê Beşa Erdnîgariyê ya Zanîngeha Yuzuncuyilê Prof. Alî Fuat Dagu li perava Taxa Çelebibaxê ya Erîdê lêkolîn kir.

Dogu piştî lêkolînê diyar kir ku dema ku qeydên arkeolojîk dinihêrin dibînin ku li navenda navenda Wanê, Gewaş û Erdîşê yek jî li Xelat û Edilcewaza navçeyên Bidlîsê xirbeyên kevn hene.

Dogu da zanîn kir ku di vê mijarê de mînaka herî baş jî Kelha Osmaniyan e. Dogu diyar kir ku ev kelha di dema Qiraliyeta Urartuyiyan da li perava Behra Wanê hatiye çêkirin û di dema Dogu got ku di salên 1840'an de navçeya Ercîşê li perava Çelebibaxê hatiye avakirin û bi rabûna avê va cihê navçeyê hatiye guhertin û wiha pê de çû: "Pêrava ku av ji vekişiya di demên berê de cihê rûniştinê bûye. Em niha li vî cihî xirbeyan dibînin. Heke av hinekî dîsa vekişe em ê hemû xirbeyan bibînin. Ya herî girîng jî ew e ku dema av 2 metreyan vekişiya xirbeyên bajêr derketin holê. Ev xirbe bi dehan sal di bin avê da man û saxlem man. Kelhên dema Urartuyiyan di bin avê da mane û îro hê jî li pê ne."







## Dr. Nûreddîn Zaza

# Şoreşger û lehengekî bênav û deng

Abdulhakim Günaydın

Di Rojhilata Navîn de kurd yek ji wan gelan e ku bi tunebûnê re rûbirû maye û ji hêla dagirkeran ve mafên wî hatinê binpêkirin. Zilm, tehde û zordarî lê hatiye kirin. Kurd bi saya zana û rewşenbîrên xwe di nav pelê dîrokê de winda nebûye û li hemberî çerxa nijadperestiye li ber xwe daye. Çand, huner, ziman û hebûna xwe parastiye.

Rewşenbîr, nivîskar û siyasetmedarê kurd Nûreddîn Zaza, yek ji wan kesayetan e ku ji xelkê xwe re bûye çira û rêya pêşketinê nîşanî wan daye. Hewl daye ku çîrok, edebiyat û kelepora kurdî dewlemend bibe. Zaza yekemîn kes e ku bi terza Çehov çîrok nivîsandine û xwestiye ku bi saya wan hişmendiya xelkê xwe zêde bike. Di çîrokên xwe de bi temamî li ser hestên neteweperwerî, kurdayetiî û serxwebûnê sekiniye. Di sala 1919'an de li bajarê Madenê ji dayik bûye. Bi eslê xwe ji eşîra Şadiyan e û hê kalê kalê wî Îbrahîm Efendî ku ji malbatek maqûl û aristokrat e li Madenê bi cih bûye û rêvebiriya bajêr kiriye. Di dema tevgera Şêx Seîd Efendî de wekî hemû deverên Kurdistanê, dewleta Tirk li Madenê jî zilm û zordari meşandiye. Li Madenê 30 kurdên bijare digire, di nava wan de bav, ap û birayê Zaza jî hene. Piştî girtina wan bi rojekê apê wî Osman efendî jilara xwe jidest dide. Bavê wî Yûsif Efendî û birayê wî Dr.Nafîz nezî 20 mehan girtî dimînin û piştî dayîna bertîleke mezin têne berdan.





### Dêrsîm, destpêka êş û kulan

Nûredîn Zaza ji bo dibistana navîn di 1929'an de çûye Amedê cem birayê xwe û li wir dest bi xwendinê kiriye. Lê birayê wî Dr. Nafîz tim di bin qontrola dewletê de bûye. Dewletê astengî jê re derxistine û nehiştiye karê xwe bike. Dr. Nafîz birayê xwe Nûreddîn jî bi xwe re girtiye û bi qaçaxî derbasî Binxetê bûye. Demekê li Helebê mane û ji wir jî çûne Şamê. Zaza, li Şamê dest bi xwendinê kiriye û çûye lîseya Fransî. Bûyera Dêrsîmê bandorek mezin lê kiriye û bi hinek xwendevanan re "Qlûba Ciwanên Kurd" ava kiriye. Ew û hevalên wî yên xwendevan bi taybetî Dêrsîm û bi giştî jî li ser rewşa Kurdistanê nivîs amade kirine û dane tevekê konsolên li Şamê. Konsolosan soz daye wan ku dengê kurdan û bûyera Dêrsîmê li cihanê bidin nasîn, lê mixabin ew soz hatiye jibîrkirin.

Nûreddîn Zaza, dema ku li Bêrûdê zanîngehê dixwîne endamekî Hîwa'yê (Rêxistina ku di sala 1942'an de li Başûrê Kurdistanê hatîye damezrandin)nas kiriye û pê re têkilî danîye. Bi reya wî ji Başûrê Kurdistanê agahî wergirtine. Xwestiye bi wesîteya wî here dîtina Mistafa Barzanî û li Zaxo ew û hevalên xwe hatine girtin. Ew birine Mûsilê. Ji wir jî birine Bexdayê û xistine zîndana Hamara'yê... Nêzî salekê girtî maye û dewleta Iraqê wî radestî Sûriyê kiriye.

### Çexov'ê kurdan

Zaza, bi pêşniyara birayê xwe Dr. Nafîz careke din diçe Bêrûdê da ku zanîngehê biqedîne. Wê demê Kamûran Bedirxan li ser radyoya Bêrûdê nûçeyan pêşkêş dike. Nûreddîn Zaza cihê Kamûran Bedirxan digre û ji xeynî dana nûçeyan, der barê Kurdistanê de agahiyan dide û çand û hunera Kurdan dide nasîn.Li mala xwe dibistaneke şevê û biçûk ava dike û zarokên Kurda fêrî nivîs û xwendina Kurdî dike.

### Rencberê Welat

Zaza piştî qedandina zanîngehê ji bo lîsansa bilind berê xwe dide Swîsrê, bajarê Lozanê. Piranî bi xwendevanên kurd re tekiliyên baş datîne. Hevalekî wan ji kurdên Başûr, dewleta Iraqê bursa wî dibire û ji bo wî hevalî di nav xwe de arikarî berhevdikin. Difikirin ku ev bi vî rengî nabe û divê xwendevanên kurd li Ewrûpa bi rêxistin bibin û bi şeş hevalên xwe re li Almanyayê bi navê "Koma Xwendevanên Kurd" komeleyekê avadikin û dibe serok. Komele di demeke kin de bi gelek zimanan govareke bi navê "Dengê Kurdistan" derdixe û li dezgeh û saziyên Ewrûpî didin belavkirin. Zaza û hevalên wî di gelek platform û semîneran de pirsa kurd li Ewrûpa û cîhanê didin nasîn.

Nûreddîn Zaza di sala 1948'an de dibe endamê delegasyona muxtiraya ku li ser pirsgirêka kurd hatiye amadekirin. Di civîna Neteweyên Yekbûyî ya payîza 1948'an de bi delegeyan re yeko yeko diaxive û ji wan dixwaze di Komcivîna Giştî de pirsgirêka kurd bînin ziman. Tenê delegeyê Yûgoslawî wî bi germî pêşwazî dike, lewra wî jî li Lubnanê Konsolosî kiribû û kurd naskiribûn. Nûreddîn Zaza, piştî qedandina doktorayê, di sala 1956'an de dîsa vedigere Sûriyê.

### Girtin û îşkence

Lê di vê vegara wî de li Sûrî gelek tişt guherîne û şoreşên leşkerî bûne. Zaza disala 1957'an de bi Celal Talebanî re rêznameya partiyê çêdike, bi Osman Sebrî, Reşîd Hemo û hin kesên din re PDK'ê ava dike û dibe serok. Partî di demeke kin de deng dide û dibê hêvî ji bo kurdên Rojava. Lê ev zêde nadome. Rejim di 8 Tebaxa 1960'î de bi Dr.Nûreddîn Zaza re gelek endam û revebirên partiyê digre.

Wan pêşî ji bo lêpirsînê dibin Helebê û ji wir jî Zaza dibin Şamê. Li Şamê bi cezayê îdamê tê mehkemekirin û wî dibin zindana bi nav û deng Mezeyê. Li zindanê gelek tehde û îşkenceyê lê dikin. Lê ew di her şert û mercî de doza mafê kurdan dike û serî natewîne. Bi piştgiriya hevalê wî parêzer Gilbert Baechtold û hin kurd û rewşenbîrên Ewropî, piştî salekê tê berdan. Li ser daxwaziya endamên partiyê û Kurdên Rojava di hilbijartina 20 Mijdara 1961'ê dibe namzet. Rejima Bees dizane ku di hilbijartinan de Zaza wê bi serkeve berî hilbijartinê bi du rojan dîsa wî digrin. Tim di bin çav û taqîba Mebahes de ye. Diçe Şamê dest bi karê bazirganiyê dike lê li wir jî wî rehet bernadin.

### Terka welat

Êdî difikire ku hew dikare li Sûriyê bimîne û berê xwe dide Lubnanê. Piştî çûna Lubnanê bi kurdên wir re, bi arîkariya Kemal Canpolad komeleyê dide avakirin. Wê demê li Başûr jî şoreşa îlonê destpêkiriye. Zaza, bi rojnameyên Lubnanî re têkiliyan datîne û li ser rewşa Başûrê Kurdistanê û Iraqê bi navê veşartî dinivîse. Konsolosê Iraqê pê dihise û li hemberî hikûmeta Lubnanê nerazîbûna xwe nîşandide. Hikûmeta Lubnanê wî digire û dişîne Urdunê. Urdun jî wî digire û piştî demekê berepaş vedigerîne Lubnanê. Lubnan jî wî radestî hêzên Sûriyê dike. Sûriye vê carê jî wî dişîne zindana Şêx Hesen a Şamê. Di sala 1967'an de li ser rêya Qamişlo derbasî Nisebînê dibe û ji wir jî diçe Stenbolê. Di sala 1972'an de bi rojnamevana Swîsrî ya Gilberte Favrê re dizewice û salek şûnde bi navê Şengo kurekî wan çêdibe. Dr.Nûreddîn Zaza yek ji damezrênerê Enstîtûya Kurdî li Parîsê ye. Ew jiyana ku di çilehekî xeddar û sar de li Kurdistanê destpê kiribû, di payizeke sar û bêdeng de li Lozanê, bi nexweşiya pênceşêrê di sala 1988'an de bi dawî dibe.

### Pênûseke xurt

Wekî Cegerxwîn, Qedrî Can, Osman Sebrî, Hesen Hişyar hwd. Nûreddîn Zaza jî nivîskariya govara Hawar û Ronahiyê kiriye û li ser çand, hûner, wêje û dîroka Kurdan hevok ristine. Lewma Mîr Celadet Bedirxan ji Zaza re digot:"Ew Çexovê Kurdan e û yên mîna wî gelek ji me re pêwistin."

## Feqiyê Teyran:

# Erzan bikire biha nefiroşe


Mehmet Gültekin

Gelo navê helbestvanê me ê klasîk ê navdar Feqiyê Teyran (1590-1660) wek hin caran tê nivîsîn ji navê berhema Ferîddûnî Attar Mantik et-Tayr hatiye, an jî wek di zargotina me de tê vegotin, ji ber ku wî tim caran helbestên xwe ji çivîkan re xwendiye ev nav bûye şanenavê wî, em pê nizanin. Lê sedema vê dikare cuda be jî, wekî ku wî li çûkan guhdarî kiriye û bi awazê harmonîk a dengê wan re gelek kêfxweş bûye ku wan deng û awazan bandor li ser rîtm û ahenga helbestên wî hiştine.

**Feqiyê Teyran dibêje:**

Bilbil dibê awazan
Bes bike şî'r û sazan
Ateş li min te rakir
Evan teyran awaz digot
Şahlûl û bilbil bûne cot
Ewan îşqek li min firot

Her kîjan be jî, ew bi vî şanenavî li seranserê Kurdistanê tê bîranîn û gelekî hebandî ye û stranên ku ji helbestên wî hatine bestekirin jixwe li her alî navdar û belavbûyî nin. Her wiha ew di helbestên xwe de nasnav ên wek Mehmûd Feqiyê Teyran, Mûksî, Xoce, Mîm û Hê û Mîr Mihê jî bikartîne.





Berhemên Feqiyê Teyran yên wek Şêxê Sanayan ku xwendvanan di kûraniya evînê de digerîne, Bersîs wek şiroveya xîret û doza dijî hîlebaziyê, Qewlê hespê reş û Xandimdim jî wek nişana şer û berxwdanê ji heyamên berêv de bi destnivîsî gihîştine roja me. Lê taybetiyeke Feqiyê Teyran a ku wî di vê derbarê de ji klasîkên me ên mayîn cudatir dike ew e ku hindek helbestên wî him bi destnivîskî him jî bi zargotinî hatine neqilkirin, pareke zêde jî tenê bi zargotinî gihîştine serdema me. Tenê di nav Kurdên Sovyeta berê de lêkolîneran ji sedî bêhtir helbestên wî berhevkirine ku parek ji wan bi awazê stranan hatine neqil kirin. Helbet di pêvajoya sedsalan de hin guhertin di naverok û şêweyê wan de peyda dibin.

Helbestên Feqiyê Teyran ne tenê ji ber baş famdariya zimanê wan û sêwirandina evîna aşiq û maşûqan gelekî ecibadî nin, ew pê re parêzgeha mirov û civaka bindest in ku ew di wan de şiroveya rewşa xwe, daxwaz û hêviyên xwe dibînin. Bi sembola ‚mîrê xedar‘ Feqî bi hestên bindestan li hember zordarî û neheqiyên hemû dagirker, serwer û dezgehan dengê xwe bilind dike. Ew dolsozê edlayê, azadî û bextewariya mirovan û a civakê ye.

Feqî dibêje:

Ez dengbêj im hatim vira
Heta hebin dengê mîra
Ez ê binivîsîm ser kaxiza
Ne biçim dêra, ne mizgefta
Çolê bimînim ez bê cil
Ez ê bikim hawar û gazî
Çiqas bimînim hêsîr û tazî
Dil ji halê wan dilerizî.

Yek ji mijarên sereke yê bingeha fikrên Feqiyê Teyran li ser bêdengetiya di tevgera mirovan û ya di civakê de ye. Ji ber ku hemû alem, dinya û xwezayî bi hevre girêdayî ye û li ser bingeha dengeyê ango hevkêşiyê avabûne, divê mirov jî di peywendiyên xwe yên civakî de goreyî vê bingehê tevbigere. Mirov û civakên ku ji hevkêşiya xwezayê dûr dikevin, beriya her tiştî zirarê didin xwe û hemû hebûnên li derdorên xwe. Wê demê jî di parvekirinê de bêedaletî bi serdikeve, hin serdest dibin, hin jî bindest, kerasetên kûr peyda dibin, rêgeha mirovan û ya civakê serobino dibe û pê re jî zilm û zordarî çêdibe. Hemû mirov û civakên ku dengeya wan xerab dibe bedbext dibin. Ji ber vê jî Feqiyê Teyran wek şîret û hişyarî dibêje:

**Efsûnkarê teyr û bazan, zimanzanê çivîk û kevokan. Bilbilê gotin û pêyvan, şair û feylesofê kurdan**

Her bayêkî em li ber kevin
Her avekê em li ser kevin
Emê ji dinyayê derkevin.

Ji bona ku mirov ji ji dinyayê dernekein, ji hevdu re neheqiyê û zordariyê nekin, ne tenê daxwaz û berjenwendiyên xwe bişopînin. Divê ji bo ku neheqî ji navbeynê rabe berî her tiştî pêşî li azwerî û nefsa xwe mirovan ya bi çavsorî bê girtin. Lewma Feqiyê Teyran dibêje:

Eger aqil were cengî
bibêj nefsê heya kingê
tu xafilî bi vî rengî.

Gava aqilê kamil û têgihîştî derkeve pêş, wê demê dikarin rê û şêwe bên destnîşan kirin ji bona ku peywendiyên qenc û kêrhatî peyda bibin û di karûbarê parvekirin û dan û standinên di navbera mirovan de bêbextî û neheqî bi sernekeve. Daxwaza şairê me ê hezkirî ew e ku mirov bi qencî ji hevdu re dilê xwe yê kanîya aqil û merîfetê ji hevdu re verkin. Ew dibêje:

Her xayê zanbûna sibût,
Bi ritma baş, mejuyê mewcût,
Ji dilê dadayî veke zimrût

Dengeya di tevger, daxwaz û peywendiyên mirovan de pîroz e û ew ji bona jiyanê bingeha herî pêwîst e. Bi fikra ku di warê maf, dan û standin û peywendiyên di navbera mirovan de wekheviyeke bi sedî sed herdem ne gengaz be jî, hewce ye ku ev yek li ser bingeha dengeyeke bi dilxwazî û bi mirovheziyê bimeşe.

Klasîkên me, bi taybetî jî Feqiyê Teyran û hemçaxên wî, di vê derbarê de gelekî hûr bûne û raman û pêşniyariyên balkêş destnişan kirine. Di vê derbarê de li ser bingeha van ramanên Feqiyê Teyran ji Xanî re wiha dibêje:

Şêx go ku: Di dînê îşqebazî
Bazarek heye, ew dibên terazî
Bê sertê hevtayiyê rewa ye
Şertê herdu terafan riza ye.

Di bazara dan û standinê de razîbûneke bi dilxwazî û bêyî zorkerî ya kesê ku dikire û ya ê ku difiroşe pêwîst e. Goreyî ramana Feqiyê Teyran û ya hin klasîkên hevçaxên wî yên ku ev baweriya wan li ser bingeha humanîzmê şînbûye, cudatiyên di navbera rengên cihê de, di navbera mirov û civakan de di warê parvekirineke bi dilxwazî û razîbûne de ne asteng in.





# Bo xwînêrên kurdîhez 3 xelat

Weşanên Sîtav ku navenda wê li Wanê ye çapkirina xebata xwe ya pirtûkên nû didomîne. Ji Sîtavê vê payîzê çend pirtûkên nû gihîştin ber destên xwendevanan. Vane çend ji wan:




**'Nasnameya konjokturel'**

Pirtûka bi tirkî ya bi navê "Konjokturel Kîmlîk" (Nasnameya Li gor demê) ku ji aliyê Leyla Atabay ve hatiye nivîsandin çapa xwe ya duyemîn kir. Atabay 1978'an de li Wanê hatiye dinê, ji 1995'an de di nav tevgera azadî ya kurd de cih girtiye û ji sala 1997'an ve di girtîgehê de ye. Niha jî ew li Girtîgeha Bayburtê ye. Atabey ji girtîgehê ve li ser Seîdê Kurd, Seîdê Nursî, yan jî Bediuzeman lêkolîn kiriye, li ser aliyên wî yê Seîdê Kurdî, Seîdê Tirkî, Seîdê Erebî xebata xwe amade kiriye. Ew di pirtûkê de li ser serdemên ku Seîdê Kurdî têre derbas bûye disekine û nirxandina xwe pêşkêş dike. Seîdê Kurdî ku serdemên xwe wekî "Seîdê Berê" û "Seîdê Nû" kiribû du beş, nivîskar jî ji ser van du beşan re aliyên wî yên kurd, aliyên wî yên dûrketina ji kurdbûnê û têkiliyên wî yên bi siyasetê re raxistiye ber çavan. Pirtûka di gulana 2014'an de derketibû niha çapa wê ya duyemîn hat weşandin.

**"Rêzimana Kurmancî"**

Ji zaravayên kurdî kurmancî li Bakur gelek pêş ket, rêz û rêçikên wê serrast bûn û di vî warî de gelek pirtûk jî hatin weşandin. Li ser rêzimana kurmancî jî bi vî awayî gelek pirtûk hatin weşandin. Niha yek ji wan bi navê "Waneyên Rêzimanê Kurmancî" ku ji aliyê Nezîr Ocek ve hatiye nivîsandin derket.

Ocek ku di sala 1961'ê li Wanê hatiye dinê di sala 2002'yan de li Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê dersa ziman girtiye, di sala 2004'an de li Wanê wî bi xwe ders daye, di sala 2006'an de di nav avakirina Kurdî-Dera Warê de cih girtiye. Ocek hin pirtûkên Samed Behrengî wergerandine kurdî. Di vê pirtûka 320 rûpelî de dersên ziman pêşkêş dike, dike ku bi vî rêzimanî yên bixwazin kurdî baş hîn bibin û kurdiya xwe bi pêş ve bibin.

**'Rêbera Axaftinê'**

"Kurtçe Konuşma Kilavuzu" (Rêbera Axaftina Kurdî) ku ji aliyê Qahir Bateyî ve hatiye amadekirin bi kurdî û tirkî ye. Pirtûk dike ku kesên kurdî nizanin bi rêya tirkî hînê kurdî bibin. Di pirtûkê de gelek mijarên rojane hene û bi ser wan re, bi ser diyalogên rojane re dike ku kurdî hînê xwîner bike. Bateyî ligel diyalogan ferhengokek jî li dawiya pirtûkê zêde kiriye û pêşkêş kiriye.

# Zarokên xwediyê hêviyên taloqkirî



Pêşangeha "Zarokên hêviyên wan hatine taloqkirin" li Galeriya Hunerê ya Sûmer Parkê hate vekirin. Di pêşengehê de wêneyên zarokên ku bi dayikên xwe re li girtîgehên Tirkiyeyê dijîn hate pêşandan.

Pêşengeha wêneyên belgeyî ya bi navê "Zarokên hêviyên wan hatine taloqkirin" li Galeriya Hûnerê ya Sûmer Parkê hate vekirin. Pêşengeh beriya niha li Stenbolê li 4 cihên cûda hatiye vekirin. Pêşengeh heta 15'ê Kanûnê wê vekirî bimîne. Wêneyên ku ji aliyê Fusûn Tirman, Harîka Kora, Serap Borucu ve hatine kişandin rewşa zarokên ku têmenê wan di navbera 0-6'an bi dayikên xwe re li girtîgehên Stenbol-Bakirkoy, Edene-Karataş, Enqere-Sîncan, Eskîşehîr-Çîfteler û Denîzlî-Bozkurtê dimînin hatine kişandin. Bi van wêneyan tê xwestin ku dengê zarokên ku bi dayikên xwe re li girtîgehan mezin dibin ji raya giştî re bê ragihandin. Şert û mercên girtîgehan ku li ser zarokan bandorên neyînî dihêle li ser pirsgirêkên zarokên girtî di warê civakî, çandî, perwerdehî û psîkolojîk de tê jiyîn di raya giştî de bê bîhistîn.

Di pêşengehê de pirtûkên wêneyan hate belavkirin û wênekêş Serap Borucu diyar kir ku wan xwestiye di nav wêne û raya giştî de bibin xelekek û wiha got: "Me xwest di nav raya giştî de hişyariyekê ji bo zarokên li girtîgehan de bi dayikên xwe re mezin dibin hin kes bibînin û têkevin nava tevgerekê."

# "Wendayên me li ku ne?"

Şaxa ÎHD'ê ya Amed'ê di çarçoveya bernameyên 10-17'ê Kanûnê Hefteya Mafên Mirovan de Pêşengeha Wêneyên belgeyî ya bi navê "Em bi qasî ku dikarin bala xwe bibin ser kesên din mirov in" li Salona Çandê ya Şarêdarîyên Bajarê Mezin hate vekirin. Nûnerên ÎHD, Baroya Amedê, Weqfa Mafên Mirovan a Tirkiye'yê (THÎV), Komeleya Hiquqnasên Mezepotamya'yê (MHD), Odeya Tabîban a Amed'ê, Hevşaredarên Bajarê Mezin ên Amed‘ê, Dayîkên Şemiyê û gelek kes amade bûn. Di pêşengehê de ewil Sekreterê Giştî yê ÎHD'ê Abdülselam İnceören diyar kir ku bi minasebeta 10-17'ê Kanûnê Hefteya Mafên Mirovan de bi armanca Pêşengeha wêneyên belgeyî hat vekîrin û wiha got: "Em her heftê ji bo wendakirina li wir rûdinên û heta kujer bên darizandin û hesap bê pirsîn dê xebatê xwe berdewam bikin."

Hevşaredarê Bajarê Mezin ê Amed'ê Fırat Anlı diyar kir ku axa piroz wateyek derxist holê û wiha axivi: "Em bi salanin li derdora peyvekê digerin. Ev peyv jî êş e. Çi çaran em li derdora xwe dinerin çavên me diêşe. Rojek tuneye ku yek di bin çavan de winda nebûye. Rojek tuneye ku kesekî jiyana xwe ji dest nedaye. Gundên me hatine şewitandin. Dayîkên me mirovên me bi van êşan jiyana xwe domandine. Ew peşengeh taybet ji bo parvekirina vê êşê ye. Wenekêşana me weke di nava dîrokê de me dihêle."

Piştre fotografgirên atolyeyê bi navê Herdem Dogrul anî ziman ku bi salan e, zarok, hevser, xwişk û bira û dayik hene ku kenê xwe ji bir kirine û wiha berdewam kir: "Şopên fidan li ser destên wan, li windayên xwe digerin. Li her derê rûzemînê belav bûne û li her welatê danê ser şopê êşekê û hey dipirsin; "Wendayên me li ku ne?" Gava dibîne ku dayik qurnafîl di dest de ne û berê xwe didin ser gora zarokên xwe ku kulîk di nav mermeran goran de aj dane, qet nebe goreke we heye û hûn avê lê dikin.



# Piştî 23 salan dilê min bi agir hênik bû



**"Ez berê hatibûm girtin û li zindanê mabûm. Piştî ku mûzîka min û stranên min pir hatin hezkirin û belav bûn, dewlet ji min aciziyan kir û gef li min hatin xwarin. Yan ezê bireviyama yan jî ezê dîsa bihatama ez çûme Swêdê. Lê belê li Swêdê 5 salên min ên destpêkê pir zehmet bûn"**

**Kalê Badî**

Her çiqas gellek kes şêweya wî bişibînê erebeskê jî ew dibêje: "Na; Agir ketiye dilê min. Lê agirê ketiye dilê min, ne agirê filîntayeke bedew e. Berovacî; Agirê dilê min, agirê bêwelatiyê ye" û piştî 23 salên kambax, karibûye vegere axa xwe û Amed û Farqîna şêrîn hembêz bike. Dibêje: "Êdî ez bimirim jî ne xem e"

***Kurê şêx û zikirdarê beyt'an***

Hunermendê navdar Beytocan serpêhatiya xwe ji me re vegot. Got: "Ez kurê şêxan im û ez bi beyt û zikrên kurdî mezin bûm. Erbane, amûra destpêka mûzîka min e û ez hê jî zikirdarê wê demê me" û wiha pêve çû: "Bavê min şêx bû. Di piçûkiya min de bavê min ji min û kekê min re erbaneyeke piçûk çêkir. Wî bi kurdî beytan distirand û min û kekê xwe, me jê re li erbaneyê dixist. Ew roj îroj e, ez di nav cîhana mûzîka kurdî de me. Ez bi wî awayî mezin bûm û min xwest ez wisa dom bikim. Lê mixabin, ji ber qedexeya li ser mûzîka kurd piyaseya mûzîka kurd tunebû û ji bêçarî me jî stranêni tirkî distirand. Piştî Tûrgût Ozal bû serokwezîr û qedexeya li ser mûzîka kurdî rakir, min jî dest bi strandina kurdî kir. Lê belê her çiqas wek fermî qedexe hatibe rakirin jî, di pratîkê de zext û zoriyên li ser kesên ku bi kurdî distirandin pir bûn. Dûre, ji ber van zextan û ji ber ez karibim debara xwe bikim, min dest ji mûzîkê berda û min koçî Stenbolê kir"

**Yên ku dixwastin bibin stranbêj dihatin Stenbolê**

Piştî çûna Stenbolê, demekê asîstaniya Orhan Gencebay dike. Li Stenbolê studyoyên kurdan tune ne. Gellek ciwanên kurd ên ku dixwazin bibin stranbêj têne cem wî. Ew, wê demê wiha vedibêje: "Xwediyên studiyoyan bi kurdî nezanibûn û min tenê bi kurdî zanibû. Yên ku dixwestin bibin stranbêj tev dihatin Stenbolê cem min û ez ji wan re dibûme alîkar. Lê belê debar pir zehmet bû. Ev kar, têra debara min nedikir. Min ji şaredariyê sandoqekî stend û min pirtûkên kevn bi erzanî distend û difrote. Di wê pêvajoyê de ez û Selamî Şahîn bûne dostên hev û rojekî ji min re got: "Kuro tu ji herkesî re albûman çêdikî, lê dengê te ji denge hemûyan xweştir e, tu çima albûmekî ji xwe re çê nakî?" Min got, 'temam ezê jî albûmekê çêbikim' Selamî Şahîn bi eslê xwe ereb e. Ji Misirê koçî Hatayê kirine. Di wan rojên ku em amadekariya derxistina albuma min dikin de dîsa ji min re got: 'Navê te Beytullah e, Beytullah navekî bi erebî ye. Were em navê te deyînin Beytocan" Kêfa min jî ji navê Beytocan re hate. Mmin got 'Baş e' û bi vî awayî min bi navê Beytocan yekem albûma xwe 'Axîna te nalîna min' derxist. Tevî xwarin û bêhndanên navbera stranan, me ew albûm di 4 seet û 10 deqeyan de tomar kir. Bêyî reklam û danasînan, me albûmê derxist, lê belê pir hate hezkirin. Em hemû matmayî man. Dûre jî albûmên din derketin "




Ewropa? Malxerabiya bêwelatan e

Beytocan wiha qala çûna xwe ya Ewropayê dike: "Ez berê hatibûm girtin û zindanî bûbûm. Piştî ku mûzîka min û stranên min pir hatin hezkirin û belav bûn, dewlet ji min aciziyan kir û gef li min hatin xwarin. Yan ezê bireviyama yan jî ezê dîsa bihatama ez çûme Swêd. Lê belê li Swêd 5 salên min ên destpêkê pir zehmet bûn. Bawer nedikirin ku ez Beytocan im. Min albûmên xwe şanî wan dida, min digot, 'ez ji we re bistirêm da ku hûn bawer bikin ez Beytocan im' digotin, 'Na' ji 5 salan betir mafê daniştinê nedane min. Bi saya kurdên me yên li Swêd, min karibû berxwe bidim. Ji min re pir bûne alîkar. Piştî 5 salan min ew mafên xwe bi dest xist û ez rehet bûm.

**Bêjera mûzîka kurd a kevneşop jina kurd e**

Beytocan, dema mûzîka kurd a kevneşop dinirxîine, dibêje: "Piraniya berhemên kurdî yên kevneşop, gotinên jina kurd in. Jina kurd helbestvana mûzîka kurd e.

Her çiqas piranî mêr stranan bistirên jî gotin, gotinên jina kurd in û stran li ser navê wê têne strandin" Piştî pirsa me ya 'Lê gelo Cîgerxwîn?' wiha dom dike: "Cîgerxwîn di helbesta kurd de ekolek e, dibistana helbesta kurd a nûjen e û ji be ku tîneke mezin li mûzîka kurd jî kirî ye, her wiha ji bo mûzîka kurd jî hîmê ekola nûjen e"

**Û veger**

Beytocan, piştî ku rê li bere vedibe ku karibe vegere Kurdistan, dixwaze di çarçoveya tûrneyeke konsertên li gellek bajarên Kurdistan û Tirkiyeyê vegere, lê ji ber ku şerê li Başûrê Kurdistan û Kobanê destpê dike, naxwaze di demeke wiha bi êş û azar de konsêrtan bide û hemû konsêrtên xwe betal dike. Beytocan, ji bo vegerê wiha dibêje: "Erê min konsêrtan betal kir, lê belê derfetên min çêbûn ku ez axa xwe, Amed û Farqina şêrîn û hemû derên Kurdistan hembêz bikim. Amed pir guherî ye, lê belê bi dîtina wê dilê min ê bi agir hinekî hênik bû. Ez hîna neçûme Farqînê, di rojên pêş de ezê biçim û Farqîna xwe ya şêrîn têra dilê xwe hembêz bikim. Ev ji bo min wek çûna bihuştê ye"





